BasNûçe
HERDEM RASTÎ
Rojname ya heftane ya nûçeyî - 2.5 TL
Hejmar: 43 02 - 08 Adar 2015 basnews.com

## Keremê Anqosî

R16

Piştî Sovyetê em jî belav bûn

# Tirkiye û PYD li asoya nû!





Ji destpêka dorpêça DAIŞ'ê ya li ser Kobanê vir ve, têkiliyên Tirkiye û PYD'ê li ser bingeheke ne saxlem pêk dihatin. Ji ber ku li gor rêveberiya Rojava Tirkiye piştgiriya DAIŞ'ê dike û deriyê sînor venake û li gor Tirkiye'yê jî PYD 'rêxistineke terorî' ye pêwendiyên herdû aliyan di rewşeke ne baş de bûn. Lê belê bi operasyona veguhestina cîhê Suleyman Şah a ku bi hevkariya YPG û Artêşa Tirkiye'yê pêk hat, di navebara herdû aliyan de pêvajoyeke nû ku cîhê gumanan e destpêkir.

Ji berk u cîhê nû yê aramgeha S. Şah axa Kurdistanê ye û ne diyar e ku Tirkiye bo vê destûr ji kê xwestiye, eger heye ku ew mesele di dahatûyê de bibe sedema pirsgirêkên nû. Tevî ku operasyon piştî hatina Enwer Muslîm ya Enqere'yê destpêkir Tirkiye hevkariya YPG'ê qebûl nake. Muslîm diyarkir ku wan di hevdîtinê de daxwaza vekirina Deriyê Miştenûrê kiriye û Tirkiye'yê jî ew qebûl kiriye. tê gotin ku Peymana Perwerdekirin û Arastina Mixalefeta Sûriye'yê jî plana Tirkiye'yê ya avakirina herêma tampon e. R02 - 3

WÊŞAN **Govenda zarokan** R15

LÊKOLÎN Mehmet Gültekin **Bagrat Xalatyan** R14

WELAT **Bazîda bi xeml** R12 - 13

KİRMANCKÎ Nadire G. Aldatmaz **Ziwanê Dayîkê** R07

## Krîza navbera Bexda Hewlêrê kûr dibe

Têkiliyên di navbera Bexda û Hewlêrê de demeke dirêj e ku bi boneya nedana budçeya Herêma Kurdistanê carina dixitimin û carina jî bi peymanên nû digîhîjîn asoyên nû. Piştî ku peymana ku beriya çend mehan hatibû îmzekirin ji aliyê Bexda'yê ve bicîh nehat têkiliyên herdû peytextan careke din li qonaxeke xetere ne. Li ser vê Hewlêrê berê xwe da yekîtiya navxweyî û dîplomasiyê. Barzanî bi hemû partiyên siyasî ve civiya û li ser dahatûyê bi wan şêwirî. Parlementerên kurd yên li parlemena Iraqê jî diyarkirin ku heke Bexda budçeyê nede ewê ji parlemen û hikûmetê vekişin. R04 - 5




BasNûçe / BasHaber Kurdistan li Amedê gîhad hev R10 - 11

Mustafa Özçelik

## Divê gotin 'Kurdistanî' be

PAK, an jî bi direji Partiya Azadiya Kurdistanê, partiyeke ewil e ku bi navê xwe di qanûnên Tirkiye'yê de bi fermî cîh girtiye û raste rast xwe li ser esasa azadiya Kurdistanê bi nav dike. Mustafa Özçelik serokê PAK'ê dide zanîn ku partiya wan xwe li ser referansa ti partiyên berê saz nekiriye, tu xetên berê ji xwe re wek referans nabînin û bi her awayî ew partiyeke nû ku li gorî rewşa heyî derketiye holê ne. R08-9

# Di navbera Tirkiye û PYD'ê de pêvajoya nû

**Çîmen Gümüş**

Hêzên kurd ku li hemberî DAIŞ'ê li Kobanê serkeftinên mezin bidestxistin û operasyonan didomînin li eniyan pêş dikevin. Gundên Kobanê yên ku di bin dorpêça DAIŞ'ê de bûn yek bi yek tên rizgarkirin. Her wiha hewldanên avakirina Kobanê jî berdewam dikin û xelkê sivîl jî vedigere bajêr. Di vê navberê de di warê pêwendiyên PYD û Tirkiye'yê de jî rûdanên nû diqewimin. Hatina Serokê Kantona Kobanê Enwer Mislim a ligel Enqere'yê û operasyona anîna aramgeha Şah Süleyman di rojeva Tirkiye û cîhanê de deng veda. Aramgeh ku bi operasyoneke ku bi hevkariya YPG û artêşa Tirkiye pêk hat li ser axa Kurdistanê tê bi cîhkirin. Herwiha hevkariya YPG û artêşa Tirkiye'yê ji her aliyên civakê ve bi nêzikahiyên cûda tê şirovekirin. Ji ber ku Tirkiye hevkariya YPG'ê qebûl nake û PYD'ê hîn jî meşrû nabîne, peymana ku di navbera herdû aliyan de hatiye kirin û mijarên heyî di warê dahatûyê de pirsên xetere derdixe holê.

Her wiha amaje bi wê yekê tê kirin ku peywendiyên nû di navbera Tirkiyê û Rojava'da rû dane. Di çerçoveya rêkeftina ku di navbera Tirkiye û Amerîkayê de hat îmzekirin de wê mixalîfên Sûriye'yê bi 'Bernameya Perwerde bike û Teçhîzat Bike' li hember DAIŞ'ê têne perwerdekirin. Lêbelê alîkariya Tirkiye'yê ya berê ya ji bo mixalîfan û encamên wê jî dibe cihê gumanan. Tê gotin ku Tirkiye bi vê minasebetê ketiye nava hewldana kul i Rojava 'hêrêmeke ewle' yan jî 'hêremeke tampon ava bike.

Piştî şerê navxweyî yê li Sûriyê hêzên kurd xweseriya xwe ragihandin û her wiha ji hêla hemû rayedarên Tirkiyê ve gef li Rojava û li xweseriya Rojava hat xwerin. Kêliya ku hêzên kurd li Kobanê şerê DAIŞ'ê dikirin Serokkoamrê Tirkiye'yê Receb Tayyib Erdoğan dianî ziman ku "Kobanê dikeve", "Kobanê ji Helebê ne giringtir e" û piştî wan gotinan aramgaha Süleyman Şah a ku li Gundê Karakozaka Helebê bû ji bo Gundê Aşmê yê Kobanê hat veguhestin. Û her wiha hat zanîn ku Tirkiye di nava Kobanê re derbas bûye û bi alîkariya YPG'ê çûye aramgah aniye. Anîna aramgaha Şah Süleyman, di çerçoveya rêkeftina Amerîka



**Veguhestina aramgahê weke ku peywendiyên Tirkiyê û Rojava di serdemeke nû de ne tê şîrovekirin. Hat zanîn ku di serdana Serokê Kantona Kobanê Enwer Mislim de veguhestina aramgahê û vekirina Deriyê Miştenûrê hatine rojeve.**

û Tirkiyê de tê nirxandin û dê Amerîka û Tirkiye li hember rejima Esed û DAIŞ'ê mixalîfên Sûriye'yê perwerde bike û dê Tirkiyê jî li rojavayê Kobanê, herêmeke ewle yan jî herêmeke tamponî ava bike û veguhestina aramgahê jî di vê çerçoveyê de hatiye kirin.

### 'Dê Tirkiye li hember DAIŞ'ê helwesteke eşkere nîşan bide'

Her wiha aramgaha Süleyman Şah a di bin xetereya DAIŞ'ê de bû ji bo Rojava hat veguestin û veguhestina aramgahê jî di çerçoveya rêkeftina Amerika û Tirkiyê de pêk hat. Oytun Orhanê ji Navenda Lekolînên Rojhilata Navîn (ORSAM) weke pisporê Sûriyê kar dike da zanîn ku pêywendiya rêkeftinê û veguhestina aramgahê bi hevdû re heye. Orhan, her wiha ragihand ku DAIŞ Tirkiyê weke sedema têkçûna Kobanê nîşand dide û dide eşkerekirin ku eger Tirkiye rê nedabûya Pêşmergeyan û ew derbasî Kobanê nebûna dê kurd biserneketana. Orhan axaftina xwe wiha domand: "Di polîtîkaya Tirkiyê ya Suriye'yê de tu guhertin pêk nehatine. Wê Tirkiye helwesta xwe ya li hember rejimê berdewam bike û wê alîkariya mixalîfên rejmê jî bidomîne. Lê xuyaye ku we li hember DAIŞ'ê helwesteke eşkere jî nîşan bide."



### Mebesta Tirkiye'yê ew e ku herêmeke ewle ava bike

Orhan her wiha da zanîn ku veguhestina Süleyman Şah di çerçoveya rêkeftina 'Perwerde Bike û Teçhîzat Bike' de hatiye kirin. Orhan ragihand ku Tirkiye xwe li hember DAIŞ'ê dibîne û di wê çerçoveyê de êdî dixwaze cîh bigire. Orhan wiha berdewam kir "Ji Cerablûsê heta Azazê li wê herêmê Tirkmen hene. Bi taybetî ji Aşme heta Cerablûsê Tirkiye dixwaze li hember DAIŞ'ê xetekê ava bike. Dixwaze Artêşa Azad bikeve vê herêmê û li vê derê herêmeke ewle ava bike. Ji ber vê yekê vegûhastina aramgahê ya ji bo Cerablûsê jî divê wisa bê şîrovakirin."

### Wê xeta sînor têkeve destê komên nêzîkî Tirkiye'yê

Orhan di axaftina xwe de da zanîn ku daxwazên Tirkiye'yê yên herêma tampon û avakirina herêmeke ewlê dihat redkirin û her wiha Tirkiye avakirina hêrêmeke ewle ji bo xwe hewce dibîne û di nava wan hewldana deye. Orhan wiha pê de çû; "Koça penaberan û dagirkirina DAIŞ'ê ya gelek herêman, kêşeya ewlehiyê saz dike. Ji ber van sedeman Tirkiye dixwaze ku komên nêzîkî xwê di xeta sînor de bicîh bike. Daxwaza avakirina herêma bêbalafir nehat qebûl kirin, lewre bi bernameya Perwerde Bike û Teçhîzat Bike dixwazin encaman bistînin. Tirkiye dixwaze ew sinor ji hêla komên bi ser wê ve ne bê kontrolkirin."

### Diyardeya pêwendiyên Rojava û Tirkiye Proseya Çareseriyê ye

Orhan li ser pirsa tifaqa Rojava û Tirkiyê jî rawestiya û da zanînn ku ew ê guhertinên qrtîk pêk neyên û ji xwe Tirkiye bi rayedarên PYD'ê re di peywendiyê de ye û bi wan re diaxive. Orhan wiha domkir; "Ji zû de ye Tirkiye bi rayedarên PYD'ê re diaxive û rêyên diyalogê vekirîne. Hatina Enwer Muslim û veguhestina aramgehê nîşaneyên kordînasyonê ne. Dixuye ku ji bilî vê tu hevkarî nîn e. Proseya Çareseriya ku Tirkiye didomîne peywendiyan yekser diyar dike. Eger Proseya Çareseriyê baş bidome wê tesîrê li peywendiyên Rojava jî bike. Eger prose têk biçe dê hewldanên nebaş û gefxwarî jî pêk werin. Niha rewşa biner çawa dibe li holê ye. Ne yekser helwest tê nîşandan ne jî bi eşkere hevkarî tê kirin.

'Dibe ku peywendiyên ku bi Başûrê Kurdistanê re hatine danîn bi kurdên Sûriyê jî re bêne danîn'

Di berdewamiya axaftina xwe de Orhan bal kişand ku ew ê daxwaza Tirkiye'yê dê ew be ku li hember rejima Sûriyê helwestekê nîşan bidin û digel mixalefetê kar bikin. Her wiha Orhan peywendiyên Hikûmeta Herêma Kurdistanê jî bi bîr xist û wiha berdewam kir: "Dibe ku peywendiyên bi Kurdistana Iraqê re hatine danîn bi Kurdên Sûriyê re jî bêne danîn. Di warê çand, kultur, sîyaset, enerjî, aboriyê de peywendî durist bibin. Di eslê xwe de tirsa Tirkiye'yê ya têkçûna yekîtiya axa wê nebe herêmên kurdan her tim ji bo Tirkiye cihê derfeta ne. Kurd mutefikên Tirkiye'yê yên sirûştî ne. Ji bo Rojava jî ev yek mikûne lê belê mesele ew di bin kontrola PYD'ê de ye û hebûna berxwedana PKK'ê ya çekdarî jî dibe arîşe."

### Rizgarkirina leşkeran karekî mirivovî bû

Enwer Muslîmê Serokê Kantona Kabanê yê ku hefteya borî hat Tirkye'yê û bi rayedarên Tirkiye re gelek hevdîtîn pêk anîn jî ragihand ku ji bo xilasbûn û nemirina leşkerean wan alîkarî da ye Tirkiye




**Û her wiha hat zanîn ku Tirkiye di nava Kobanê re derbas bûye û bi alîkariya YPG'ê çûye aramgah aniye.**

û nexwestine ew leşker li wir bên kuştin. Muslîm wiha berdewam kir: "Me dixwest ku ew leşker bêne parastin. Di hevdîtinê de me diyar kir ku heta ku leşker herin cihê xwe emê alikariyê bikin. Digel hevkariya YPG'ê leşker hatin rizgarkirin. Ev xebateke mirovî bû. Divê li hember DAIŞ'ê herdu bere jî berxwedanê bikin. Lê piştî veguhestina aramgahê divê peywendiyên herdu hêlan jî baş bin. Û her wiha di pêşerojê de gavên wisa bên avêtin."

### Me ji Tirkiye'yê xwest ku deriyê Miştenûrê veke

Mislim daxuyaniyên rayedarên Tirkiyê yên ku dibêjin wan beyî alîkariya YPG'ê operasyon pêk aniye jî nirxand û da zanîn ku wan bi hev re ew operasyon pêk aniye û eger ew nebûna Tirkiye'şê nedikarîbû tiştekî wisa bikira. Muslîm wiha berdewam kir: "Ez ewil dixwazim vê yekê bêjim. Çima beriya bi 4 mehan ev yek nehat kirin. Lewre DAIŞ li wê herêmê bû. Piştî şikestina DAIŞ'ê hewcebû jiyana wan leşkeran bihata parastin. Me jî ev yek kir. Lê belê ez înkarkirina Tirkiye'yê famnakim. Daxuyaniyên me hemû rast in. Divê ne wisa bûya. Em alîkariya hemû xebatên mirovî dikin. YPG'yiyan heta ku neqil pêk hat peywira xwe bi cîh anîn. Xebateke hevpar bû û bi serkeftî derbas bû." Muslîm di axaftina xwe de ragihand ku Tirkiye daxwaza parastina leşkêrên xwe ji wan kiriye û di derbarê pirsa daxwaza PYD'ê ya ji Tirkiyê de wiha got: Kobanê li hember terorê bû eniyek. Veguhestina aramgahê jî yek ji perçeyên berxwedana li hember DAIŞ'ê ye. Ji ber vê yekê me alîkarî da. Divê Hikûmeta Tirkiye sekna xwe ya li hember terorê di ber çavan re derbas bike û gavan biavêje.

Muslîm li ser daxwazên xwe yên li Tirkiye'yê jî rawestiya û da zanîn ku wan di serdana Enqerê de ew daxwaz ji Tirkiyê kirine; "Me ji wan xwest ku deriyên sînor bêne vekirin. Her sê aliyên Kobanê hatine dorpeçkirin. Tenê ji aliyê Tirkiye'yê alîkari têne. Birîndarên me jî derbasî wira dibûn. Divê gavên mezintir bên avêtin. Ji bo avakirina Kobanê û ji bo vegera xelkê Kobanê divê ev gav bên avêtin. Hem ji bo alîkariya xelkê me yê li Kobanê û hem jî ji yên li ser sînor divê Deriyê Miştenûrê bê vekirin da ku mirovên me bi rihetî derbas bibin."

### Bila Tirkiyê tiştên tê axaftin di pratîkê de jî bike

Serokê Kantona Kobanê Enwer Muslîm li ser peywendiyên Rojava û Tirkiye'yê yên piştî veguhestina Süleyman Şah jî rawestiya û eşkere kir ku peywendiya wan her roj bi rayedarên dewletê yên li Sirûcê re heye û ew peywendî jî gelekî xurt in. Muslîm axaftina xwe wiha domand: "Em cîran in. Em dixwazin di pêşerojê de jî peywendiya me bi Tirkiye re baş be û berdewam bike. Hevdîtinên me berdewam dikin lê belê di warê fermiyetê de hîn em li hev neciviyane. Di van hevdîtinan de herdu teref jî dixwazin ji mirovahiyê re xizmetê bikin. Lê belê em di pêşerojê de dixwazin ku ew tiştên hatine axaftin di pratikê de cîh bigrin. Em dixwazin ev derî vebe û xelkê me bi rihetî tê derbas bibe."

### 'Ji bo Kobanê em ji Tirkiye'yê piştgiriyê dixwazin'

Her wiha Muslîm da zanîn ku wan Qomîteya Jinûveavakirina Kobanê avakiriye û niha ew qomîte li ser hewcedariyan raportan amade dike û ewê di demeke nêz de wê raporê ji raya giştî re eşkere bike. Muslîm ragihand ku ji bo avakirina bajêr ew li benda alîkariya Hikûmeta Tirkiye û parlementoya wê û gelek komele û saziyên mafê mirova ne û pêwistiya wan bi hemû tiştî heye. Muslîma rewşa dawî ya Kobanê ji wiha eşkere kir: "Di bin kavilên bajêr de bi hezaran term hene. Wesayîtên me nayên bikaranîn. Doh ji Sirûcê ji bo paqijkirina rêyên nava bajêr wesayît dan me lê wan têr nakir. Em dixwazin ji hemû şaredariyên Tirkiye'yê ji me re alîkarî bê şandin."

Her wiha Muslîm li ser vegera xelkê bajêr jî rawestiya û da zanîn ku heta niha 30 hezar sivîl vegeriyane û hinek ji wan vegeriyane gundan û hinek ji wan jî vegeriyane nava bajêr. Muslîm ragihand ku derfetên xelkê medenî nebaş in û ew nikarin pediviyên wan dabîn bikin û wiha pê de çû; "Em nikarin pêdiviyên wan dabîn bikin. Ji hemû hêlê ve kêşeyên wan hene. Li hêlekê termên ku dibin sedema nexweşiyan, li hêla din mayin û teqemeniyên ku DAIŞ'ê bicihkirine yên ku hîn neteqiyane hene. Ev der dîsa jî herêma şer e û vegera hemû xelkê me dê kêşeyan bi xwe re bîne. Ji ber vê yekê em dixwazin ewil ciwanên me vegerin da ku em bi hev re derfetan ava bikin." Muslîm bersiva me ya di derbarê alikariya Hikûmeta Herêma Kurdistanê ya ji bo Rojava de jî wiha got: Tenê ne ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê, em ji hemû kurdan alîkariyê dixwazin. Em hêvî dikin ku ji Rojhilatê Kurdistanê, ji Başûrê Kurdistanê ji Tirkiyê ji hemû saziyên sivîl ji bo Kobanê piştgirî û alîkarî bên."



### Ji ber bombeyên neteqiyayî li Kobanê 30 kesî jiyana xwe ji dest da

Wezîrê Berevaniya Kobanê Ismet Şêx Hesen jî ragihand ku nêzîkî hemû gundên Kobanê ji destê DAIŞ'ê hatine rizgar kirin û hêzên kurd herêm xistine bin qontrola xwe. Her wiha Hesen da zanîn ku tenê çend gun di destê DAIŞ'ê de mane û di demeke nêz de ewê agahiya rizgarbûna hemû gundan bidin. Hesen wiha berdewam kir: "Hindik gund di destê DAIŞ'ê de mane. Emê agahiya rizgariya wan jî bidin. Xelkê sivîl vedigere lê belê tu derfet tun in û kêşe saz dibin. Heta niha ji sivîlan 30 kesî ji ber mayîn û bombeyên neteqiyayî jiyana xwe ji dest dane. Ji ber vê yekê em di kurte demekê de dixwazin qorîdora mirovî bê vekirin."

### Navenda bajarê Til Hemis di bin kontrola YPG'ê de ye

Di vê navberê de Berdevkê YPG'ê Rêdûr Xelîl jî eşkere kir ku li Cizîrê li Til Hemisê nêzî 5 rojan e ku di navbera YPG/YPJ'ê û DAIŞ'ê de şer heye û operasyonên li hember DAIŞ'ê jî berdewam dikin. Xelîl da zanîn ku hêzên wan gîhîştina nava bajêr û operasyonên wan berdewam dikin. Xelîl axaftina xwe wiha domand; "Hêzên me gîhîştin nava bajarê Til Hemis. Bê guman bajar heta niha bi tevahî nehatiye rizgarkirin. Lê belê gelek ji beşa bajêr di destê YPG'ê de ye. Operasyonên YPG'ê li hêlên din jî berdewam dikin. Di dawiya 5 rojan de 100 gundên herêma Abdulhamîd hatin rizgarkirin." Hevserokê Meclîsa Kantona Cizîre Hekim Xalo jî ragihand ku Til Hemis ji ber ku nêzîkî Şengal û Iraqê ye û ew di cîhekî stratejik de cîh digire, têkçûna DAIŞ'ê ya li Til Hemisê dê ji bo DAIŞ'ê şikestineke gellekî mezin bi xwe re bîne.

### Yekîneya Pêşmerge ya 4. derbasî Kobanê bû

Hêza Pêşmergeyan a 4'emîn ku weke Yekîneya Piştgiriya Kobanê tê zanîn jî derbasî Kobanê bû. Balafira ku Pêşmerge tê de bûn ji Balafirxaneya Navdewletî ya Hewlerê rabû û li Balafirxaneya GAP'a Rihayê daket. Piştî daketina li balafirxaneya Pêşmerge bi maşînan debasî Sirûcê bûn. Piştî gîhîştina yekîneya 4. ku ji 124 kesan pêk tê wê yekîneya 3. ku ew jî ji 150 kesî pêk dihat dê vegere Hewlêrê.

# Krîza bi Bexda'yê re berê Hewlêrê da yekîtî û dîplomasiyê

Li Başûrê Kurdistanê, ji aliyekî ve ji ber ku peymana navbera Hewlêr û Bexdayê ya li ser şandina para budceya Rêveberiya Herêma Kurdistanê û frotina petrolê kete xeteriyê û kurdan destê xwe dirêjî karta serxwebûnê kir û ji ber vê yekê Bexda neçar kir ku para budceya RHK bişîne, ji alî din ve çavdêrên siyasî jî destnîşan dikin ku qeyrana ku niha Iraq tê de ye, gendeliya ku di nav artêşa Iraqê de rû daye û bêtecrûbeyiya artêşê, destên Bexdayê li hember Hewlêrê girê didin. Bêguman ev nirxandinên çavdêrên siyasî rast derket û Bexdayê disa dest bi şandina para budceya RHK kir. Li qada dîplomasiyê ev geşedan hene û di qada şer de jî DAIŞ'a ku piştî ji Pêşmerge derbên mezin xwar, hêrsa xwe ji talankirina mîrateyên çandî û dîrokî û qelitkirina Mesîhî û kên neteweyan derdixe.

## Barzanî li gel partiyan civiya

Serkirdeyên partiyên siyasî yên Herêma Kurdistanê li Ofîsa Serokatiyê ya li Selehedînê, di bin serokatiya Serokê RHK Mesûd Barzanî civiyan. Li gor daxuyaniya malpera fermî ya Serokatiya RHK, Mesûd Barzanî li ser mijarên wek; şerê li dij DAIŞ'ê, geşedanên dîplomatîk ên bi Hikûmeta Iraqê re û qeyrana aborî ya li Herêma Kurdistanê, bi serkirdeyên partiyên siyasî re şêwirî ye. Di civînê de Barzanî qala hevdîtinên xwe yên di 51. Konferansa Ewlehiyê de, ku bi Serok û rayedarên payebilind ên dinyayê re kiribû kir. Barzanî diyar kir ku serkeftinên Pêşmerge yên eniyên şer, di raya giştî ya dewletên rojava û dinyayê de rola kurdan grîngtir kirî ye. Di vê civînê de her wiha Wezîrê Çavkani- yên Sirûştî Aştî Hewramî jî detayên hevdîtinên bi Bexdayê re hatine kirin aşkere kir. Di dawuyaniya Serokatiyê de hate diyarkirin ku di derbarê geşedanên siyasi û leşkerî û pêdiviyên ewlehiyê yên li Herêma Kurdistanê de hin biryar hatine stendin.

## Frotina petrolê mafê destûrî yê Kurdistanê ye

Di daxuyaniyê 7 biryarên ku di vê civînê de hatine stendin jî hatin aşkerekirin. Biryar ev in:Serkeftinên Pêşmerge şayanî pesindayînê ne û heta armancên hevpar ên kurdan pêk bên, ew ê bi aliyên siyasî yên Herêma Kurdistanê û yên din ên Kurdistanî re hevkarî û yekîtiya siyasî, îdarî û leşkerî pêk bê. Ji bo di navbera hêzên siyasî yên Kurdistanî de jihevbawerî pêk bê, wê mafê partiyên kabîneya 8. ên wek; PDK, YNK, Tevgera Goran, Yekgirtûyî Îslamî û Komelî Îslamî yên di Hikûmeta Herêmê û yên bajaran radestî wan bibe.

Gelê kurd û Hikûmeta Herêma Kurdistanê weke di maddeyên 112. û 115. ên destûra Iraqê de hatiye diyarkirin, pêwîst dibîne ku her dû alî mercên destûrê pêk bînin û ji bo Herêma Kurdistanê dikaribe avahiya aboriya xwe bidomîne û bigeşîne, bûdceya 2015'an li gor destûrê bê dabeş kirin û mafê frotina petrolê ya RHK bê şert û merc bê qebûlkirin. Ev yek, di heman demê de wê pirsgirêkên pereyên karmend û Pêşmerge û budceya Herêma Kurdistanê jî çareser bike. Peymanên ku bi Bexdayê re hatine îmzekirin wê gav bi gav pêk bê. Herwiha divê Bexda jî pêdiviyên van peymanan pêk bîne.

## Wê pirsgirêkên teknîkî bi diyalogê bêne çareserkirin.

Ji bo çareserkirina astengiyên peymanê, bernameyeke siyasî û zanistî hatiye pesendkirin. Her wiha li gel Parlament û Hikûmeta Iraqê, her wiha divê koalîsyona şîa û aliyên sunne jî hin pirsgirêkan nekin hincet û ji şandina meaşên karmendên Herêma Kurdistanê re nebin asteng.

Divê weke artêşa Iraqê û hêzên din ên çekdar, ji Pêşmerge re jî piştgirî bê dayîn û meaşên wan bêne şandin.





Ji bo hêzên Pêşmerge bi çekên giran bêne xurtkirin û di warê lojîstîk de bêne piştgirîkirin wê Serokatî, Hikûmet û Parlamenta Herêma Kurdistanê di qada navneteweyî de dîplomasiyeke baş û bi rêk û pêk bimeşînin. Her wiha partiyên siyasî yên ku beşdarî vê civînê bûn piştgiriya xwe ji Hikûmeta Herêma Kurdistanê re dubare kirin û ji bo çareserkirina pirsgirêkên meaşên karmendan û budceyê jî xwestin ku xebat berdewam bikin.

## Bexdayê pere şand

Li Başûrê Kurdistanê, ji ber peymana ku di navbera Hewlêr û Bexdayê de çend meh berê li ser mijarên; di bin çavdêriya SOMO'yê de şandina bazara dinyayê ya petrola Herêma Kurdistanê û destpêkirina şandina ji sedî 17 para budceya RHK hatibû îmzekirin, ji alî Bexdayê ve bi hinceta ku 'heta tevahiya petrola ku di peymanê de hatibû destnîşankirin neyê şandin em ê ji RHK re pere neşînin' hatibû rawestandin, peyman ketibû xeteriyê û nirxandinên wek 'Peyman têk çû' hatin kirin. Di derbarê vê mijarê de Endamê Parlamenta Iraqê yê Listeya Kurd Adil Nûrî got: "Bexda bêçar e ku para budceya Herêma Kurdistanê bişîne. Ji bilê vê tu rê û rêbazeke Bexdayê tune ye" Nûrî angaşt ku artêşa Iraqê nikare li dij DAIŞ'ê şer bike û ji bo rizgarkirina Mûsil û herêmên din hewcedarê kurdan û Pêşmerge ye. Adil Nûrî got: "Ger ku kurd xwe ji nav hikûmetê vekêşînin wê Iraq bikebe rewşeke qeyranî. Ji ber vê yekê şandina para budceya Herêma Kurdistanê ji bo wê şertê sereke ye" Ji aliyekî ve ev pirsgirêk wiha têne ziman, lê ji aliyê din ve jî hin geşedanên ku diyar dikin ku di vê mijarê de pêşketin hene diqewimin. Lewre Serokê Banka Navendî ya Herêma Kurdistanê Adham Xurşîd got ku Bexdayê 250 milyar dînar(210 milyon dolar) pere şandiye Hewlêrê. Di derbarê mijarê de berpirsên Wezareta Darayî piştraskirin ku ev pere gihîştine Hewlêrê û dane zanîn ku ev pereyên hatine ew ê bidine karmendên ku ji Kanûna sala çûyî ve meaşên xwe wernegirtine. Ji aliyekî ve di xeta Hewlêr û Bexdayê de ev geşedan pêk tên ji alî din ve jî ji eniyên şer agahiyên ku diyar dikin DAIŞ roj bi roj qels dibe têne ber destên me.

## DAIŞ kete kêmîna Peşmerge

Di derbarê eniyên şer de Fermandarê Pêşmerge yê Eniya Rojavayê Kerkûkê Kemal Kerkûkî ji rojnameya me re ragihand ku êvara îniyê seet di derdora 20:30'an de DAIŞ'ê li Kerkûkê hewldaneke êrîşî pêk aniye, ji ber ku Pêşmerge vê hewldanê ji pêş ve têgihîştiye li dij vê hewldanê kemînek daniye û di encama vê kemînê de derbeke mezin li DAIŞ'ê xistiye. Kerkûkî da zanîn ku ji dengê qêrîna wan diyar bûye ku gellek endamên DAIŞ'ê hatine kuştin û birîndarkirin û yên mayî jî ji bê çarî paş ve reviyane. Kerkûkî ragihand ku Pêşmerge heta nêzî baregehên DAIŞ'ê jî li dû wan çûye û bi vî awayî hewldana wan a êrîşê pûç derxistiye.

## Peşmerge ji bo operasyona Mûsilê amade ye

Fermandarê Pêşmerge yê Eniya Mûsilê Kamran Hewramî jî di derbarê amadekariyên operasyona ku tê payîn di mehên Nîsan an jî Gulanê de bê kirin de agahiyan da rojnameya me. Hewramî got: "Pêşmerge hem ji bo operasyona Mûsilê û hem jî ji bo hemû operasyonên ku pêdivî pê hene amade ye, Pêşmerge tenê li benda fermana Serokê Herêma Kurdistanê û rayedaran e û ger ku ferman bê dayîn, Pêşmerge tafilê dikare dest bi operasyonan bike" Hewramî da zanîn ku roja îniyê, bi koordînasyona Hêzên Hewayî yên Hevpeyman û Hêzên Pêşmerge, li Şengalê li dij DAIŞ'ê êrîşekê pêk anîne û ji hêla baregehên DAIŞ'ê dûman bilind bûye. Hewramî got: "Ji ber ku DAIŞ êdî nikare êrîşên mezin pêk bîne hewl dide ku bi êrîşên xwekujî encaman bi dest bixe lê ev êrîş jî êdî nikarin ziyanê bidine Pêşmerge"

## DAIŞ ji hundur ve dirûxe

Di van demên dawî de, ji ber ku Pêşmerge di şer de bi tecrûbe bû û şarezayiya xwe ya taktîkî bi pêş xist û heta radeyekê çekên giran bi dest xist û bi vî awayî derbên mezin li DAIŞ'ê xist, DAIŞ li gel êrîşên hewayî û yên Pêşmerge şarezayiya xwe ya tevgerînê wunda kir û di eniyan de gellek wundahî da. Ji ber vê yekê DAIŞ hêrsa xwe ya van derban ji endamên xwe derdixe. Li gor agahiyên ku ji herêmê têne ber destên me DAIŞ'ê bi hinceta ku zanyariyên planên êrîşan ragihandine, li Mûsilê 12 rêvebirên xwe îdam kirî ye. Agahiyên ku di hesabekî twitter'ê yê ku nêzîkî DAIŞ'ê de hatine aşkerekirin jî vê nûçeyê piştrast dikin. Di vî hesabê twitter'ê yê ku şayanî gotinê ye de tê gotin ku li Mûsilê 12 rêvebirên DAIŞ'ê ji ber sîxuriyê kirine hatine înfazkirin. Fermandarê Eniya Mexmûr û Gwêrê Qadir Hesen jî ji BasNewsê re got: "Agahiyên di derbarê têkçûna sazûmana biryardar a DAIŞ'ê ya li Mûsilê rast in. Ji ber ku di van demên dawî de, di êrîşên ku pêk anî de bi ser neket DAIŞ kete vê rewşê. DAIŞ'ê bixwe jî li xwe mikûr hatiye ku wê 12 endamên xwe ji ber ku sîxuriyê kirine kuştiye" Hesen operasyonên Pêşmerge yên serkeftî destnîşan kir û got: "DAIŞ li Mûsilê ketiye derûniyeke tirsnak. Her roj gellek cenazeyên terorîstan yên ku di eniyan de têne kuştin diçin Mûsilê. Di êrîşên hewayî de jî gellek wundahî didin. Her wiha li Mûsilê li, li kuçe û kolanan, ser dîwaran nivîsên 'Bijî Pêşmerge' têne nivîsandin. Ev yek jî derûniya endamên DAIŞ'ê têk dibe"

## DAIŞ mîrateya dîrokî têk dibe

Ji Başûrê Kurdistanê û Iraqê tenê agahiyên di derbarê encamên xeternak ên şerê ku DAIŞ bûye sedem nayên. Her wiha agahiyên di derbarê rûxandin û têkbirina mîrateyên çandî û dîrokî ku nimûneyên şaristaniya rojhilata navîn in jî tên. Tê gotin ku endamên DAIŞ'ê êrîşê Mûzexaneya Arkeolojî ya Mûsilê kirine û peykerên dîrokî yên mûzexaneyê rûxandine, ji 10 hezaran bêtir pirtûk û nêzîkî 700 nimûneyên destnivîsî şewitandine. DAIŞ'a ku van pêkanînên xwe bi rêya vîdeoyê, bi ser înternetê ve weşand, bi vî awayî her wiha feraseta xwe ya di derbarê dîrok û çandê de jî aşkere kir.

## Barê herî giran ê şer li ser milên Pêşmerge ye

Ji Ajansa Nûçeyan a Radyoya Navxo Goran Îbrahîm Ahmed'ê ku di derbarê şerê ku li dij DAIŞ'ê tê meşandin de pirsên rojnameya me bersivand, da zanîn ku li gelemperiya Iraqê pevçûn kêm bûne lê belê li Herêma Kurdistanê ji Diyala, Selahedîn, Kerkûk, Başik heta Mûsil, Şengal û heta ser sinorê Rojava di qadeke berfireh de şer berdewam dike, Li alî Diyala çiqas kê bûbe jî li herêma Nînova ku Mûsil, Şengal û derdora wê dihundurîne şer bi tûndî dom dike. Ahmed, anî ziman ku barê herî giran ê şer li ser milên Pêşmerge ye, li Diyala, Kerkûk û Şengalê hêzên Gerîlla jî li gel Pêşmerge beşdarê şer dibin û awareyên ku nêzîkî qadên şer in ji alî Pêşmerge û Gerîlla'yan ve têne parastin.

## Sunne naxwazin Mûsil bikeve destê artêşa Iraqê

Di derbarê piştî daxuyandina DYA'yê ku ku wê di meha Nîsan an jî Gulan'ê de operasyona Mûsilê pêk bê û amadekariyên Pêşmerge û artêşa Iraqê de jî Goran Îbrahîm Ahmed van agahiyan bi me re parve kir: "Bi vê mebestê DYA'yê çek û cebilxane şande Bexdayê. Waliyê Mûsilê Esil Nûceyfî ku xwedî hêzeke çekdar e û li gel hêza xwe li Herêma Kurdistanê ye, ji bo operasyona Mûsilê ji RHK daxwaz dike ku Pêşmerge û hêzên sunne bi hev re operasyona Mûsilê pêk bînin û ji bo vê yekê li Hewlêrê hevdîtinan pêk tîne. Lê belê ji ber ku bêtir ji şîayan pêk tê naxwaze ku artêşa Iraqê beşdarî operasyonê bibe. Ji alî din ve RHK jî naxwaze dest bi operasyoneke ku artêşa Iraqê beşdarî lê nake bike. Ji ber vê yekê di derbarê operasyona Mûsilê de nezelaliyek heye. Lê ji alî din ve DYA, bi qebûla beşdariya artêşa Iraqê xebatên operasyonê dimeşîne û ji artêşa Iraqê re çek û ji Bexdayê re jî alîkariya aborî dişîne. Li gor agahiyên herî dawî ji bo çek û cebilxane ji Bexdayê re 17 milyon dolar pereyê alîkariyê şandiye û ji vî pereyî hindek jî negihîştiye Hikûmeta Herêma Kurdistanê"

## Kêmneteweyên Iraqê di bin gefa DAIŞ'ê de ne

Înstîtuya Dad û Mafê Mirovan a Navneteweyî di raporta xwe ya di derbarê rewşa kêmnetewe û komên olî yên li Iraqê de diyar kir ku DAIŞ li Iraqê, hewl dide ku komên olî û kêmneteweyan ji holê rake, bi vî awayî DAIŞ sûcê şer pêk tîne û bi hin pêkanînên DAIŞ'ê gihîştine asta komkujiyê. Gerînendeyê Înstîtuya Dad û Mafê Mirovan a Navneteweyî William Spencer jî di nirxandina xwe ya di raportê de angaştiye ku çapemeniya dinyayê, di weşanên xwe de pir cih didine operasyonên leşkerî yên li dij DAIŞ'ê lê belê sûcên ku li dij kêmneteweyan pêk tên nakebe rojevê.

Di vê raporta ku li ser rewşa kakeî, şebek, tirkmen û ezdiya daneyan dihundurîne de tê diyarkirin ku ji Gelawêja 2014'an bi şûn ve, piştî ku Mûsil ji alî DAIŞ'ê ve tê dagirkirin kêmnetewe û komên olî ketine bin xeteriyeke mezin. Di raportê te ev agahî têne dayîn: "Bi dagirkirina Şengalê re DAIŞ'ê hewl da ku ezdiyan ji holê rake. DAIŞ, ezdiyan weke mertalên zindî bikar tîne. Ji destpêka 2014'an heta niha nêzîkî 2 milyon suryanî, ezdî, tirkmen û hin komên din ji bê çarî ji warên xwe koç kirine û reviyane" Di raportê de her wiha nêrînên di derbarê alîkariya koçber û awareyan, darizandina kesên ku li dij kêmnetewe û komên olî sûc pêk tînin û plansaziya rewşa piştî şer de jî cih digirin.



## Piraniya mesîhiyan xwe spartine Kurdistanê

Rojnameger Goran îbrahîm Ahmed di derbarê mesîhiyên Iraqê de jî ji rojnameya me re ragihand ku piraniya mesîhiyên koçî Herêma Kurdistanê kirine, ji ber ku Frensa bi awayekî fermî mesîhiyan vexwendiye Frensayê beşek ji mesîhiyan dixwazin biçine Frensayê lê beşek jî dixwazin vegerin ser axa xwe. Ahmed da zanîn ku beriya êrîşa DAIŞ'ê jî mesîhiyan ji Bexdayê daxwaz dikirin ku xweseriya xwe bi dest bixin, lê belê piştî êrîşên DAIŞ'ê, piraniya wargehên mesîhiyan hatine rûxandin, dêrên wan hatine bombekirin û ji ber xeteriya komkujiyê ji sedî 90'ên mesîhiyan xwe spartine Herêma Kurdistanê. Gorn Îbrahim Ahmed got: "Ebûbekir El Bexdadî ku xwe weke Xelîfe olan dike, ji ber ku ji pêwendiya di navbera mesîhî û dewleta Frensayê de ye agahdar e, li dij mesîhiyan pir dijwar e. Ji ber vê yekê jî DAIŞ li dij mesîhiyan bi dijwarî êrîşan dike û mesîhiyan dikuje û wargehên wan dirûxîne"

# Îran: Di navbera jeopolîtîka û sêdarê de

**Rojê Mamend**

Rêkxistiya Efûya Navnetewî di rapora xwe ya dawî de radigehîne ku rejîma Îranê di meha borî de 17 kes darve kirine. Li gor vê raporê hejmarek ji van kesên darde kirî çalakên siyasîne û hejmarek ji wan jî çalakên kurd in. Li gor datayên rapora nav birî, rejîma Îranê bi taybetî di wan mehên dawî de dixwaze hejmareke din ji girtiyên siyasî dar ve bike ku 7 kurdên din di rêzê de ne.

Niha pirsiyara sereke ku li vir bala mirovan dikşîne ser xwe ev e: Gelo kiryara van darde kirinan eleqeya xwe bi jeopolîtîka hundir û derveya Îranê çi ye? Gelo Îran di zeman-bendiya van îdaman de dixwaze çi peyamek bide der û dora xwe? Ango evan kirdaran ji bi hêziya vî dewletî tên an jî ji bê hêziya wî?




**Jeopolîtîka derve: belav kirina asoyî ya hêz**

Di mijara zanista jeopolîtîkê de dû corên hêz hene: 1. Hêza dijwar (Hardpower) 2. Hêza nerm (Softpower). Li gor vê pênaseyê Îran dewleteke sext-hêze, ji ber ku ewlewiyeta vî dewletî ewlehî û serbazî ne. Hal vaye ku dewletên nerm-hêz ewlewyeta wan aborî – kultûrî ne. Eger em cardin vegerine ser Îranê, dibînin ku piştî faktora Behara Ereban ev dewlet di dû alyan de dikşe: aliyek ev behar ziyanên mezin gîhandine berjewendiyên jeopolîtîk ya Îranê. Mînak gorepana[sahe] Îraqê berê tam di bin hegemoniya Tehranê de bû, niha ev hegemoniya parçe dibe. Gorepana Surye berê bi temamî wek beşek ji jeopolîtîka Tehranê dihat hijmartin, lê îro eva parçe dibe.

Ji alyê din jî Îran dixwaze faktora Behara Ereban di xizmeta berjewendiyên xweyî jeostratejîk de bixebtîne. Ji ber vî jî di Surye, Îraq, Lûbnan û Yemen de [dibe ku Behreyn jî] gav bi gav siyaseta vekirina tengje [kirîz] pêş dixe. Bi vî hawî gotina Ferîd Zekerya lêkolînerê Amerîkayî rast der diçe ku dibêje: "Îran tevî Tehran, pênc paytexta herêma Rojhilata Navîn dagir kiriye: Şam, Bexdad, Beyrût û Sen'a yê."

Di nêrîna yêkem de dibe ku wisa derkeve Îran mezintir bûye û gav bi gav dibe Sûper Hêza herêmê. Lê li gorî şirove yên pisporên jeopolîtîk dema dewleteke sext-hêz çavkaniyên xweyî hêz di warê asoyî de (yatay) belav dike, hêdî hêdî hêz û tiwanên xwe ji dest dide. Di encamê de eva zemîneya tune bûna wî misoger dike. Mînak: dema Yekîtiya Sovyeta berê cenga Efganîstanê fere kir, tenê 2 sal piştî vekişyanê hilweşiya. Ji ber viya hinek ji pisporên jeopolîtkayê dibêjin, belav kirina asoyî ya hêz, di pêşerojek nêzîk de zemîneya hilweşîna Îranê xweş dike.

**Sedema wê jî li gor pisporan, ewe ku di warê meşrûyeta demokratîk de têkilya dewlet bi hemwelatiyan re alozî dijî. Dewlet ku di bingehê xwe de teokirasiek totalîtariye, seqmgîrî [istikrar] û vemayîna xwe bi şidandina paye yên hêzê girê dide (serbaz, polîs, îstixbarat û td) nekû bi hez kirin û hilbijartina hemwelatiyan re!**

**Jeopolîta hundir: Givaştina stûniya hêz**

Di demk de ku Tehran dibe hardpowera herêmê û hêza xwe bi asoyî belav dike, lê li ser asta navxweyî her ku diçe hêza xwe dişidîne û bi stûnî [dikey] çavkanî yên weyî hêzê kom dike.

Li gor pisporan her ku diçe Tehran, navendgeriyek (santralizm) zêde tir dimeşîne û her ku diçe di warê makro-polîtîkayê de fişarên asayiş û serbazî fere tir dike. Ji ber viya pisporan di wê baweriyê de ne ku Tehran bi zane bûn zeman-bendiya van darde kirinên dawî tam di vî demî de hilbijartiye.

Niha çavdêrên siyasî dixwazin pirek di navbera van du kefeyên terazûyê de bibînin: gelo çawan dibe dewletek di warê jeopolîtîkayê de fere dibe û dibe sûper hêza herêmê, li de heman demê de di warê siyasetên hundirîn de qels dimîne? Ji bo qerebû [telafî] kirina wê jî dest davêje siyaseta tirsandinê û hewl dide ku ruxsarek tirsnak ji dewletê li ba hemwelatiyên xwe çê bike? Çavdêr dipirsin gelo siyaseta darde kirina aşkere, di xwe de çi peyamek hildigre? Tehran dixwaze çi ji hemwelatiyên xwe re bêje?

**Encam:**

Li vir hinek ji pisporên siyasetê di wê baweiyê de ne ku ev pirs, pirsek dû sere: serek nîşana bi hêziye û serek jî berûvajî, nîşana bê hêziyê ye. Çawan? Bi vî rengî ku çiqwesî Tehran li derve hêzên xwe belav dike, neçar dimîne di hundir de hêzên xwe bişdîne. Ev jî ji me re dibêje ku paye yên hêzê di hindiro de lawazin.

A viya jî tê wê wateyê ku dewlet neçare li gor belav kirina asoyî ya hêz li derve, di hundir de hêz bi awayê stûnî bişdîne. Manaya viya jî ewe ku xwe neçar dibîne hejmarek zêde tir ji neyarên xwe bi dar ve bike. Eva jî tenê yêk wate dide: Jeopolîtîka derve bi jeopolîtîka hundir ve girê dayî ye: li derve şer û li hundir jî kuştin.. tu bêje dar de kirin...



# Ziwanê dayîkê ziwanê heskerdişî yo




**Nadire G. Aldatmaz**

Doman/e ke gama xoya verêne eşte be na dinya verê cû ziwanê maya xo, ziwanê dayîka xo heşneno/a. Verê cû no ziwan museno/a. Seke doman/e ameye re ziwan, çekuyê xoyê verênî kî çekuyê maya xo yê. Belkî no semed ra yo ke "ziwan" û "dayê" zîhnê mi de veng danê be yewbinî. Qalê "kirmanckî" ke kerd "daye", qalê "daye" ke kerd kî çekuyê kirmanckî mezgê mi de têra benê. Zereyê ê çekuyan de yew cuya esto. Dayîka fîstane derga kofîyînê. Dayîka por hineyine fetelîna verê çimanê mî de. Dest de çila, vengde çekuyê heskerdişî: "Dayê qedayê binê linganê to bigîro! Dayê qurbanê vengê toye weşî bo!" Kamcîn ziwan de nê çeku hende bi zerrî û can yenê vatene? Yan kî kamcîn ziwan nê çekuyan nîya weş vano? Yan kî kamcîn ziwan dayîka min a fîstane derga, por hineyina kofîyîne ano verê çimanê mi.

Yeno re mi vîrî, wexto ke mi raya verêne maya xo ra "anne" va, sey sucdare, peyê stuna keyeyî de xo dard we û winî va. Xamîya na çekuye hem hîssê sucdarîye dayîbî mi hem kî seke sey yew dêsî kewtîbî mabênê ma. Dima ke zaf serrî vêrdî ra hîna çekuya "anne" bîye weşe û hîna hîssode germin da be mi. O wext, yanî wexto ke çekuya "anne" êdî bîye şîrîne ma şaristan de bîme. Çekuya "dayê" dewe de mendîbî. Mi dêka (pîrîka) xo ra "dayê" vatêne û tim ayê de bi kirmanckî qisey kerdêne. Coka zîhnê mi de nê her di çekuyî "dayê" û "kirmanckî" daîma têdima yenê.

Ziwanê dayîke de hîs esto, eşq esto, heskerdiş esto. Ziwano resmî, xora nameye xo de kî belî yo, resmî yo, tey hîs çin o. Ziwanê dayîke çiqas ke bi dayîke û heskerdîşê aye yeno re vîra merdimî, ziwano resmî kî bi dewlete, bi zor, bi serdinîye, bi mecburîye, bi nêm famkerdîş, bi xêribîye, bi xamîye... yeno vîra merdimî. Ziwanê dayîke zîhnê merdimî de winî xorîn ca gêno ke mesela yew kesî ke nêweşîya alzhaymerî girewte ziwananê ke yê maye ra tepîya muso, pêrune xo vîrî ra keno, tena ziwano ke maya xo ra muso, maneno. No durum tek tena bîle zîhnê merdimî de, heyatê merdimî de muhîmîya ziwanê dayîke musneno re merdimî.

Kes wayîrê qudretê weçînitişê ziwanê maya xo nîyo. Madem heqa merdimî weçînitişê ziwanî rê çin a, madem merdim bêîrade ziwanê mayanê xo museno, o wext dewlete mecbura ke heme cayanê welatê xo de hemwelatanê xo rê bi ziwanê înan xizmete bikero. Dinyaya moderne de, welatanê medenî de dewletî xizmeta şaranê xo bi ziwanê ê şaran kenê. Ma vajî verê cû Swêd de û dima kî hama hama heme welatanê Ewropa de domanî bi ziwanê dayîka xo kî perwerde benê. Çike înan luzimîya ziwanê dayîke ma ra rew fam kerda. Çitur ke her mewzu de ma ra avêr ê, mewzuyê zafziwanîye de kî ma ra zaf avêr ê. Ê zanê ke zafziwanîye hem zîhnê merdimî tenena rind gurenena hem kî hunerê qiseykerdena ziwanî, hunerê, xo rast îfade kerdîşî, avêr bena.

Dewleta huqûqî, ganî mabênê hemwelatanê xo de cîyayîye mekero, ganî heme hemwelatanê xo tabîyê yew muamele bikero. Ma de winî yo? Seke heme şarê na welatî kî zanenê ke dewleta ma yew ziwanî û yew miletî qebul kena û nînan ra teber ziwananê bînan û miletanê bînan ser o qiseykerdîşî rê bîle tehamul nêkena. Zaf serran ra tepîya ewru êdî ma kî ziwanî ser o qisey kenîme la îcraatê dewlete zaf kêmî yo. Ma vajîme yew het ra dewleta ma, hukumatê ma bi demokratîya xo, xo goynenê, heto bîn ra seba ciwîyayîşê kurdkî (kirdaskî yan kî kirmanckî), seba avêrşîyayîşê kurdkî teba nêkenê. Unîversîteyan de qismê kurdkî kerdî ra, nê cayan de seba musnayena kurdkî malimî perwerde kerdî labelê nê malimî tayîn nêkerdî. Va "Ma asîmîlasyon qedena." dima va "Ziwanê şima ziwanê medenîyetî nîyo." Yanî seba ke kurdkî ziwanê perwerdeyî nêbo, çi ke dest ra ameye eyî kenê. Gamê ke avêr bierzê, di gaman peyser erzenê.

Ewru serê dinya de, bi taybetî hetê Ewropaya rojawane de heqa merdiman cayode muhîm der a. Ziwanê dayîke de perwerde kî mîyanê heqa merdiman de saye beno. Zafê welatanê Ewropa bi xo na heqe teslîm kerda. Tabî ke taye cayan de seba na heqe zaf mucadele kî bîyo, peynîya mucadeleyî de na heqe girewta.

Tirkîya wazena ke beşdarê Yewîya Ewropa (YE) bibo. Huqûqê Yewîya Ewropa de kî caye heq û huqûqan esto. Ti hetê ra biwaze ke beşdarê YE bibê, heto bîn ra kî ziwanê hemwelatanê xo qedexe bikerê. Tenena muhîmê xo nê hemwalatê to nêzdîyê seserre yo ke mucadelê kenê. To dîyo ke qedexekerdîşê ziwanan be ruhê zemanî ra têduşt de nîyê. Welatanê dinyaya moderne rew ra nê problemî hal kerdê. Her kes êdî zobî meseleyan ser o gureyeno. Ti şîkîna ke mîyanê nê welatan de polîtîkaya xoya barbare tatbîq bikerê?

Di sey, di sey û pancas serrî ra avêr dewletê neteweyî çin bî. Împaratorî bî. Sînorê împaratorîyan kî zaf hîra bî. Şarê ke mîyanê nê sînoran de manenê hem hetê ziwanan ra hem kî hetê dînî ra cîya cîyay bî. Împaratorîya Osmanîye de kî durum winî bî. Herbê dinya yo yewinî ra tepîya ke erdê împaratorîye bî vila, şaran xo rê dewletî înşa kerdî. Nê dewletî bi îdeolojîyê nasyonalîstî saz bî. Nînan ra yewe kî Dewleta Tirkîya bîye. Dewleta Tirkîya yew ziwan xo rê kerd ziwano resmî, ê bînî çin saye kerdî. Dewleta Tirkîya yew dîn xo rê kerd dîn, ê bînî çin saye kerdî. Yan kî raste rast waşt ke ê bînan asîmîle bikero, çin bikero. Şarê na cografyayê qedîmî, ê ke çend hezar serrîyo tîya de ciwîyene ra waşt ke vîndî bibê, bimirê. Çike yew ziwan ke merd, şarê wayîrê ê ziwanî kî mireno. Kurdî verê no zulmî de vindetî, kor-topal bo kî axrê ziwanê xo heta ewru ard. La naye ra tepîya seba kirdaskî nêbo kî seba kirmanckî tehlukeya vîndîbîyayîşî dewam kena. Çike kirmanckî tena zereyê sînoranê Tirkîya de yeno qiseykerdene. Yanî ziwanê ma mendo be însaf û wijdanê dewleta Tirkîya rê. Tabî ke zaf kes teberê îmkananê dewlete de nuseno, waneno la no bes nîyo. Kirmanckî heta ke ziwanê perwerdeyî nêbo, malesef omrê xo zaf derg nîyo.

Polîtîkaya perwerdeye neteweyî yê Tirkîya malumê her kesî ya. Bi na polîtîka hîna zaf rengê ma, hîna zaf vengê ma benê vîndî. Serê kaxite de tayê qanunê rindî estê labelê ê kî tetbîq nêbenê. Mesela Tirkîya de, qanunê perwerdeyî de yew madde esta: "Perwerde de Seyyewbinîya Firsetî" Yanî goreyê na madde ganî her kesî rê eynî muamele bibo. Bi polîtîkaya perwerdeyê neteweyî, na madde mehkumê serê kaxite bîya. Keso ke ziwanê dayîka xo tirkî yo tim avantajin o, tim çend gamî avêr der o. Wexto ke dest bi mektebî kerd, bêproblem wendiş û nuştiş museno. Dima kî hesab, kitab û dersanê bînan museno. Keso ke xêrza tirkî yew ziwan qisey keno mecburo ke verê cû tirkî bimuso. Labelê programê dersan goreyê nê durimî amade nêbîyo. Yanî verê cû musnayena ziwanî, dima kî wendiş û nuştiş çin o program de. Dewlete nê wendekaran tirkî zana qebul kena û sey ê bînan wendiş û nuştiş musnena be wendekaran. Wendekarî wendiş û nuştiş musenê la çîyo ke wanenê û nusenê fam nêkenê. Nê heta ke nêmnêmcet ziwan musay ê bînî wendiş-nuştiş û hesab musenê. Ê ke reye gurînê, nê ganî di rey bigurîyê. Hem kî ê ke tirkî nêzanenê tim bêaqil yenê qebul kerdene, zor û zehmet vînenê. Çike malimîyê ke şonê domananê kurdan rê malimîye kenê kî, zafê xo no durum ra bêxeber ê. Peynîye de nê domanî pêro kewnê eynî îmtîhan û goreyê netîce kî unîversîteyan de wanenê, yan kî nêwanenê. Netîceya îmtîhanî ke eşkera kerde, wezîrê perwerdeyê neteweyî vejîno televîzyonan de vano falan şaristan îmtîhan de bîyo yewin. Falan ca kî peynîye de mendo. Şaristanê ke peynîye der ê malu ê. Domanê kurdan ancîya peyser mendê. Sebebê no peyser mendîşî polîtîkaya perwerdeyê neteweyî ya, polîtîkaya asîmîlasyonî ya û çin bîyayena perwerdeyê ziwanê dayîke yo.

Îşte seyyewbinîya firsetê Tirkîya! Seyyewbinîya firsetî nîyar a? Her caye sîstemê perwerdeyî heleşîyo ro. Dest bierzê kotî uca destê to de maneno. Ganî sîstemê perwerdeyî pêro bin ra bivurîyo, perwerde îlmî bo, objektîf bo û ziwanê dayîke ziwanê perwerdeyî bibo ke tede heskerdiş kî bibo.



# Mustafa Özçelik:
# Heta ku gotin ne 'Kurdistanî' be çareserî nabe

Rawin Sterk

PAK, an jî bi dirêji Partiya Azadiya Kurdistanê, partiyeke ewil e ku bi navê xwe di qanûnên Tirkiye'yê de bi fermî cîh girtiye û raste rast xwe li ser esasa azadiya Kurdistanê bi nav dike. Mustafa Özçelik serokê PAK'ê dide zanîn ku partiya wan xwe li ser referansa ti partiyên berê saz nekiriye, tu xetên berê ji xwe re wek referans nabînin û bi her awayî ew partiyeke nû ku li gorî rewşa heyî derketiye holê ne. Özçelik dibêje; "Lê ew nayê wateya ku em ji paşeroj û berdêlên ku li Kurdistanê hatine dayîn dûr in. Hemû berdêla ku li çar perçeyên Kurdistanê hatine dayîn yên me ne. Em ji ked û paşeroja herçar perçeyan jî xwedî derdikevin û wê bo Kurdistanê bi qîmet dizanin. Li kêder Kurdistanê serê kurdekî biêşê, li vir ê me jî wê biêşê."

Özçelik di derheqê avakirin, siyaset, nêzikahî û mebesta wan a 'azadiyê' û herwekî din di warê hilbijartin û tifaqan de, di derheqê pêvajoya heyî de jî pirsên me bersivand. Özçelik wiha got, "Divê em navê tiştinan raste rast lê bikin. Dema ku gotina te ne Kurdistanî be, çareserî nabe. Em vekirî û eşkere dibêjin ku kurd hene û welatê me jî Kurdistan e. Mafê me ye ku em li ser xaka xwe îdareya xwe bixwe bikin û biryara dahatûya xwe bidin. Divê em hem di warê qanûnî de dewletê bidin guhertin û hem jî bi awayên fiilî çareseriya xwe bixwe binûsin"

**Di serî de em dixwazin hun hinekî PAK'ê bidin naskirin. Çima PAK? Çavkaniya PAK'ê çi ye? Referansa PAK'ê ji dîroka Kurdistanê de çi ye?**

Partiya Azadiya Kurdistanê ji navê xwe jî diyar e ji pewistiya azadiye ji bo gelê kurd, ji bo civaka kurd, ji bo siyasetmedarên kurd pewistiya azadiye ji bo hemû pêkatiye Kurdistanê. PAK ji pêwîstiyekê derket holê. Tiştê me hesapdikir û jê zêdetir tesira PAK'ê di nav civakê de derket. Me got dengê ku ji me re bên dengên kesên di sindoqê de bêbiryar in. PAK partiyeke nû ye lê kadroyên ku bi dehan salan de dinav têkoşîna Kurdistanê de her yekî bi awayekî cihe xwe girtî ne. Ji ber vê yekê jî PAK hêza xwe ji dîrokê distîne. Du salan xebatên me dewam kirin. Me di 27'ê Nîsana 2013'an li Amedê komisyona diyalogê çêkir û 6 mehan piştî wê me hewldana Partiya Kurdistanê çêkir. Me salekê xebatên xwe domandin û di18'ê Cotmeha 2014'an jî me PAK avakir. PAK'ê di roja ewil de tiştek tespît kir, me got 'ew guhertinên li cîhanê di civata kurd û Kurdistanê de û siyaseta kurd û Kurdistanê de gelek bandor kiriye.' Ev guhartin di aliyê siyasete de dixwest ji xwe re rêyekê veke. Ew ê di gelek mijaran de ji hev cûda bûn. Piştî ew guhartinên li cîhanê û pewistiyên ku îro li Kurdistanê derketin gelek nêzî hevbûn ji ber wê me tespitek danî û me got pewistî bi partiyek azadiyê, demokrasiyê, edaletê ku bikaribe ewil di nava xwe de wê pêk bîne û paşê bikaribe projeyeke li Kurdistanê pêk bine. PAK'ê got; 'îro pewistiya civaka Kurdistanê bi hemû pekaninên xwe partiyek dikare bibe hemû pekateyê Kurdistanê pewistiyek wisa lazim e, yanî partiyek olî yan mezhebî ez dibêjim ne li gora Kurdistanê ye. Miletê kurd û hemû pekhatiyên kêmnetewe gelên ku li Kurdistanê dijîn, em partiya wanin jî. Em ne partiyek şexsî ne. Ji gelek kevnoşopiyan kadro hene di nava me de. Em dibêjin êdî li ser wan kevnoşopiyan parti avakirin ne li gora îroya Kurdistanê ye. Divê em li gor pewistiya civata xwe ya Kurdistanê bernama xwe ava bikin. Mafê çeresareya milletê kurd esasa me ye. Me di bernama xwe de bi sê awayan dewletbûn îfade kir. Me got: 'dikare fedaralî jî be, dikare konfedaralî jî be, dikare serbixwebûn jî be.' Li gor şert û mercan em dikarin vana binin pêş. Çawa iro li Başûrê Kurdistanê dewletek federe heye û hikumeta wan heye, parlementoya wan heye. Em dikarin li Bakurê Kurdistanê jî li gel Tirkiyê li ser vê bingehê şîrîkatiyekê pêk bînin. Ji ber wê me got; yê fedaraliyê jî diparezin ê konfedaraliyê û serxwebûnê jî diparezin dikarin di nava partiyê de cih bigirin. Eger mirov bi aweyekî bijmere mirov dikare partiyeke islamî hebe, partiyeke çepgir hebe, partiyeke wek em bêjin azadîxwaz û Kurdistanî dikare hebe. Yanî sê çar merkez iro hebin û yên nezî hev bin jî xwe li wan merkezan bicivînin em dibêjin ji bo Kurdistanê çêtir e. Ji ber wê jî PAK jî ji roja derketiye gotiye em ne berdewamiye filan derêne. Em li gor ihtiyaciya miletê xweyî iro em li gor we derketine. İro li Bakurê Kurdistanê em berdewamiya xebata ku 200 sal ji bo azadiya Kurdistanê hatiye meşandin em berdawamiya wê ne. Em dibên çewa ku Şêx Said, Seyit Riza, Qazî Mihemed, Mele Mistefa Barzanî yê me nin. Em berdawamiya wan in. Çawa ku dibêjin ew dor û berê ku rexistinên ji 70 e heta 80 ye bi sed hezaran însan rexistin kirin. Xistin nava tevgera Kurdistanê em dibêjin ev sî sal e li Bakurê Kurdistanê ji bo vî miletî gencên me çûne ji bo azadiya miletê Kurdistanê şehit bûne jî yên me ne. Ji ber wê jî em berdawamiya vê ne û vê kedê bi giştî dibînin. Em li wê jî xwedî derdikevin bi vê manê jî Partiya Azadiya Kurdistanê ferqekê dixe û dibêje ez vê xebata giştî xebata xwe dibînim.





**Dema mirov dibêje Kurdistan, yan parçeyek tê qabûlkirin, yan jî parçeyek tê fêhmkirin. Di gotina 'Kurdistan' de mebesta we çiye? Ji bo çar perçeyan projeya we çi ye?**

PAK ji bo azadiya Bakurê Kurdistanê bi rê ketiye. Em wek partî bingehên rexistinbûna xwe li Bakurê Kurdistanê dibînin. Em dibên welatê me bê iradeya me û bi awayekî neheqî navneteweyî û heremî hat perçekirin. Kurdistan welatekî çar perçe ye, kurd milleteki çar perçe ye. Ji Sykes Picot heta niha ji Lozanê heta niha rastiyek heye ku perçeyên Kurdistanê êdî di nava xwe de şeklekî taybet girtine. Ji ber we jî 4 dewlet in û li her dewletê sîstemek û hiqûqek çê bûye. Em dibêjin her perçe xebata xweyî esasî ji bo rizgarkirina perçeyê xwe divê bikin. Lê divê danûstendin, piştgirî, hevkarî, diyalog û bi awayekî rexistin hebe ku her çar perça jî bên cem hev. Ew naye wê manê ku em ê rabin her li Rojava an Rojhilat yan jî li Başûrê Kurdistanê beşa xwe deynin em ê li hember partiyan bixebitin. Partiyên Başûrê Kurdistanê birayê me ne. Di xebatên wan de em ê hemû piştgiriya wan bikin. Em ê rexneya xwe jî li wan bikin. Lê em naçin mûdahaleyî karê wan nabin. Em dibêjin ew hene, ew têra xwe dikin û tiştê em bikin rexne, pêşniyaz e. Lê divê di nav her çar perçayan de koordinasyonek hebe. Her çar perçe li gor wê şert û şûtê wê heye lê dive bi konferansek be, bi dezgehek be, carna dibên Kongra Netewî mirov dikaribe ji bo konferansekê be dinav her çar perça de çê bike ku problemên heyî yên her perçeya cûda cûda tesbit bike û li gor wê jî mirov bikaribe çawa alîkariya hev bike. Mesele alîkirin e. Divê kurd alî hevdû bikin, nekû rê li ber hevdu bigrin. Ji ber wê jî PAK, partiya azadiya Bakurê Kurdistanê ye. Lê her sê perçeyên din jî welatê me ye. Dewleta Başurê Kurdistanê dewleta me ye. Bakur, Rojhilat, Rojava welatê me ye. Milletê kurd gelê Kurdistanê milletê me ye. Li ku dere serê wan biêşe wê serê me biêşe.



## We hemû serlêdan û bernameya xwe we tev bi kurdî teslim kir?

Belê... bernamê bi tirkî û bi kurdî ye. Niha rast e. Em bi xwe wek PAK dengê welatekî û milletekî ne. Em welatek û milletek in divê wî hesabî bi me re bikin. Nêrina me ya dewletê, parlementoyê û hilbijartina jî esasê xwe ji vê fikra me distîne. Niha serdozger dozek li me vekiriye. Ji ber ku di tuzika me de Kurdistan, azadbûn, dewletbûn tê parastin, ew dibe sedema dozê. Ew doz di asta ku em parastina xwe bikin de ye. Ji me daxwaz dikin ku em vana biguhirin. Lêm naguhirin. Piştî ku me parastin kir û ew guhertin qebûl nekir wê doz biçe Dadgeha Qanûna Esasî û ji wir jî wê biçe Dadgeha Ewropa. Ew demeke dirêj e û bala me jî ne li ser vê ye. Ew bo me meseleyeke biçûk e.



**Kurdistan û azadî dû peyvên ku ji dirokê hete niha, pir hatine cem hev. Ji navê partiya we diyar e ku hun azadiya perçeyekî dixwazin. Hem ew û hem jî beşdarbûna hilbijartina, sazkirina li gor qanûnên Tirkiye nakokî nîn e. Nezelaliyek li holê nîn e glo?**

Azadî, xwe iderekirina gelê Kurdistanê ye. Azadî statû ye, azadî dewletbûne. Gava dibên azadiya Kurdistanê, li Kurdistanê bi awayekî azad em dixwaazin xwe bi xwe idare bikin fikra me ev e. Ji ber wê manê jî îro em dibêjin pirsa kurd û Kurdistanê ne ew pirse ku li Tirkiyê di çerçoveya hemwelatiyê Tirkiyê de mafê çandî, demokratîk, komara Demokratîk an mesela peymana welatên Ewrûpayê ya çareseriya xweser e. Meseleya kurd û Kurdistanê ne ew meseleye ku bi wan şêweyan hal bibe. PAK, ji bo vê jî mûcadele dike lê pirsa kurd û Kurdistanê bi vê hal nabe. Derketina me yek jê jî ev e ku em dibêjin pirsa kurd û Kurdistanê ne pirsa demokratbûna Tirkiyê ye, demokratbûna Tirkiyê wê feyda wê li me bive lê pirsa welatekî û milletekî ye. Li cîhanê ev mesele çawa hatibe çareserkirin ew ê ya me jî wisa be. Hûn jî dizanin HDP bernameya xwe daniye û dibêje Tirkiye welatê me yê hevbeş e. Dibêje komara demokratîk, dibêje milletê demokratik. Ev siyaset xelet e. Ev siyaset ji aliyekî ve jî ew keda 200 salî ye. Ji ber wê em dibêjin Kurdistan heye. Milletê kurd heye û Kurdistan welatekî gelê Kurdistanê ye. Pêkhateyên Kurdistanê yên etnîkî, olî, mezhebî, civakî bila li waleta xwe bi awayekî azad xwe îdare bikin.



**Mustafa Özçelik pir nayê nas kirin em hineki behsa jiyana te bikin?**

Ji malbateke kurd û Kurdistanî ji Mêrdînê û ji Dêrika Çiyayê Mazî me. Heta sınıfa 5'an min li wir xwendiye. Piştre em hatin Stenbolê û ez li Stenbolê mezin bûm. Lîse û zanîngeh min li wir xwendiye. Di doza kurd û Kurdistane de em gelekî xebitin. Di heman demê de endezyar im jî. Heta demekê min karên xwe yên taybet jî dikir lê di warê siyaset û kurdistanê de fikrên me, berhevbûnên me hebûn. Me xwest ku em bo Kurdistanê tiştekî bikin û me berê xwe da siyasetê.

**Meseleya dewletbûne an jî çareserkirina pirsgireka esasî ya Kurdistanê, dema mirov dawa wê bike û bi qanûn, yasayên Tirkiye'yê partiyekê ava bike ew nabe nakokî? Di mejiyê mirov de tiştekî ne zelal dernakeve holê?**

Niha di vê meselê de pirsa we baş bû ku em jî hinekî fikrê xwe li ser vê meselê derxin holê. Niha PAK ji roja ku em derketine me gotiye em dawa meşrû ya milletekî, welatekî dikin. Ji ber wê jî em ê xwe bi tu qanûn û esasên dezgehên ku hebûna me red û inkar bike, em ê xwe pê sînordar nekin. Em dawa miletekî diparezin lê em ê dawa milletê xwe welatê xwe di dezgehên qanûnî de jî biparezin û em ê bibejin ku ji bo mafê azadiya ramanî rexistinbûne ji bo qebûlkirina gelê kurd û welatê Kurdistanê, Tirkiye wek dewlet mecbûr e ku rê ji me re veke. Îro bi qanûnên 40 welatên Ewrupa peymanên navnetewî imzekrine. Ewrupa jî vî heqi dide PAK'ê da ku miletê kurd gelê kurd karibe partiya xwe ava bike beyî ku şîddete bi kar bîne. PAK jî dibêje em bi rêyên sivil û demokratik bi girseyî em ê xebatên xwe bikin, em şîddetê bikar nîn in û madem wiha ye dewlet divê PAK'ê jî qebûl bike û milletê kurd, Kurdistanê qebûl bike. Niha dibên Tirkiyeyîbûn. Em Tirkiyêbûnê rast nabînin. Em şirîkatiya Tirkiye'yê û Kurdistanê rast nabînin. Em nabin Tirkiyeyî. Em nabin tirk. Gotin yek millet, yek dewlet, yek welat yek al. Ev siyaset xitimî. Pûç bû, îflas kir. Ger em bixwazin li ser esasê wekheviyê siyasetekê bikin em hazir in. Lê em Tirkiyêyîbunê wek tirkbûn dihesibînin. Ji bo çi em ê milletê xwe, welatê xwe deynin alîkî

**Li Kurdistanê mirov dikare bêje di warê ideolojik de di warê siyasetê da dareke du çiqulî heye. PDK û PKK. Gelê Bakûr jî ji aliyê van herdû guliyan ve hatiye birêxistinkirin û li ser bingeheke hişk îdeolojîk ew pêkhatiye. Bo we birexistinkirina gel û guhertina nêzikahiya gel zehmet nîn e? Hunê vê rewşê çawa biguhirin?**

Beriya ku em PAK'ê daynin jî ev minaqaşe hebû. Dipirsîn; hûnê çawa rêyekê vekin. Di salên 70'yî de dor û derên kurd û Kurdistanê rêxistinên xwe avakirin û bi rê ketin. Wê çaxê gava te digot ez kurd im pir zehmet bû. Wê demê pêwistiya kurda tespit kirin. Îro mafen me ne ew e ku em bi Tirkiye'yê re tekîliyê deynin. Em xwe ji kesi bilindtir jî nabînin kêmtir jî nabînin. Wek hemû milleten dinyayê heqe me jî heye ku em jî cih bigrin li dinya yê. Ev rastiya ernîgarî, netewî ye, etnik e û dîrokî ye. Milletê kurd û Kurdistane PAK'ê îcad nekiriye. Lê wek her miletan, em bi şexsiyeta xwe bi hebûna xwe em dibêjin mafê me ye. Em amade ne ji cihekî dest pê bikin. Belkî îro dewletbûn nebe le divê Tirkiyê milletê me, welatê me qebûl bike ûli ser vî esasî em birekevin. Bila ev ked vala neçe. Di civata Kurdistanê de pirrengî û pirdengî hewce ye. Ew civata ku yek deng û yek reng be xwe pûç kiriye. Welatên ku yek partibin diçin diktatorî ye. Li Bakurê Kurdistanê azadî pewîste. Em ne çep in. Ji bo azadiye milleten me hewceye em bi kesi re dijminatiyê nekin. Kê dest daye me em ê spasiya wan bikin. Dewleta Başûrê Kurdistanê bi yekîtiya kurdan çêbû.

**Di pêşerojê de hilbijartin hene. Hûn ji bo tifaqê çi difikirin?**

Di meha Adarê de civîna PAK'ê heye û emê di vê civînê de biryara xwe eşkere bikin. Em ê bi berfirehî kûr û dûr bifikirin lê niha me biryarek nedaye. Em wek PAK'ê çûn partiyên siyasî hemûyan. HDP jî hat serdana me. Teklîfa tifaqa hilbijartinê li me kirin. Me û HAK-PAR, PDK Bakur, PDK-T, KADEP em her pênc partî li hev civiyan. Ka em dikarin çi bikin û çi nekin. Em pêşî prensîban tesbît dikin. Em parlementoyê red nakin. Her platform û her cihekî bala milletê me li ser be dive bala me jî li ser be. Em ê xwe ji vê dûr nexin. Em ê siyaseteke çawa bikin ew ê di civîna meclîsa me de diyar bibe. Em ê heya hefteyekê zelal bikin.

**Di nava HDP'ê de derdor û partiyên Tirk yên cûrbecûr hene. Po tifaqeke bi HDP'ê re ew astengiyeke bo we?**

Niha ji me re çep û rastî ne pîvane. Hewceye di civaka Kurdistanê de çep û rast jî hebin. Mesela tifaqê de em zedetir li ser prensibên HDP'ê rewşa wê, siyaseta wê binerin û em ê li ya xwe binerin û em ê bidin ber hev. Dive em bersiva wan bidin. Me ji wan pirsî hûn dibêjin em partiya Tirkiye'yê ne lê em jî Partiya Kurdistanê ne hûn çawa jii bin vê siyasetê derdikevin. Lê tiştek heye, niha HDP li hêviya hilbijartinê ye. Îro mesele ne ew e. Îro ji 550 parlamenteran 120 kes ji wan kurd in.Eger 50-60 parlementerên te hebin gerek bibêjin ku em milletek in, hûn mecbûr in me qebûl bikin. Mesele ew e ku em ê çi bikin mesele ne ketina parlementoyê ye. Ez herim parlamentoyê ez ê çi bikim ez neçim ez ê çi bikim. Teqrîben 17 milyon kurd henin. Û bila tevahiya wan dengê xwe bidin HDP'ê û bila 200 kes bibe parlamenter dîsa ji nabe çareserî. Heta ku tu bi gotineke Kurdistanî û kurdewarî tevnegerî, ku 500 parlementer jî yê tebin fêyde nake.



## Tekiliya we û Başûr çawa ye?

Li Başûrê Kurdistanê em dewletbûne diparêzin. Çi deskeftine kê heye ya ew me ye. PAK xeteke din e. Hewce ye ku em piştgiriya hev bikin. PAK xwe bixwe îdare dike. Bi îmkanen xwe, bi kadroyên xwe û bi siyaseta xwe. Bi vê mana yê jî em ferqa xwe ya esasî datînin. Piştî avakirina PAK'ê jî em çûn Başûre Kurdistanê me tekîliya xwe nû kir. Bi gele Rojava re jî tekîliyên me hene. Lê em ne partiyeke bi patînaja Başûr in. Sedî sed em bi îmkan û derfetên xwe tevdigerin.

# BasNûçe / BasHaber çar parçe li Amedê gîhand hev

Di çarçoveya bernameya vekirina nûsîngeha rojnameya me BasNûçe / Bashaberê ya Amedê panel û resepsyion hatin li darxistin. Ji çar perçeyên Kurdistanê û ji çar aliyê cihanê beşdariyeke mezin çebû û di axaftinan de 'yekîtî' mijara serekebû. Di resepsiyon û panelên ku bi sernavê, "Di Sedsaliya Sykes Picot de Perspektîfên Pêşeroja Rojhilata Navîn û Kurdistanê" hatin lidarxistin de zêdetirî 500 kes hatin cemhev. Herwekî din ji herçar perçeyan kesên weke, Alî Qazî, Abbas Velî, Kadrî Yıldırım, Zîrek Kemal, Azad Cundiyanî, Kamal Sîdo, Mithat Sancar û bi dehan kes amadebûn. Dîsa ji her çar perçeyan gelek partî, sazî, komele, rêxistin û dezgehên siyasî û civakî di bin bana heman salonê de kombûm. Çalakiya ku du rojan domkir weke "Konferanseke Netewî ya Biçûk" hat şîrovekirin.

### Çar parçe di bin heman sîwanê de

Ji Başûrê Kurdistanê, rojnameger,siyasetmedar, dîplomat, parlementer, akademîsyen û nivîskar jî tê da zêdetirî 40 kes beşdarî rêzebernameyan bûn. Ji Rojhelat; kurê Qazî Muhammed siyasetmedar-dîplomatê berê Alî Qazî, Prof. Dr. Abbas Valî. Ji Rojava; Dr. Kemal Sîdo, ji Başûr; Zîrek Kemal, Bextiyar Êlî, Mueyed Teyîp, Botan Tahsîn, ji Bakur; Prof. Dr.Kadri Yıldırım, Hevserokê Şaredariya Mezîn'a Amedê Firat Anlı, ji Tirkiyê , Prof. Dr. Mithat Sancar, Prof. Dr.Mesut Yeğen, Prof. Dr. Ferhat Kentel, Prof. Dr. Bilal Sambur bala hemû kesî kişandin ser xwe.

### Di her qonaxê de giringiya kurdî

Gerînendeyê Giştî yê BasNûçe/BasHaberê Faysal Dağlı di vekirina resepsiyonê de axivî û xêr hatil li hemû mêvanan kir. Piştî axaftina Faysal Dağlı Serokê Gruba BasMedyayê Botan Tahsîn axaftinek kir. Piştî axaftinên wan; ji çar perçeyên Kurdîstanê gelek kes derketin ser dikê û axivîn. Axaftina hemû kesan bi kurdî û vê yekê jî gelekî bal kişand.

Parlementerên Bakurê Kurdistanê ku beşdarbûna wan ku eşkere bibû û ji ber Pakêta Evlehiyê ya li meclîsê beşdarî bernameyê nebûn. Parlementerên HDP'ê Altan Tan, Faysal Sarıyıldız, Esat Canan, Halil Aksoy û Parlementerê AKP'ê Galip Ensarioğlu û Şaredarê Agiriyê Sırrı Sakık ji bo ku nikarîn beşdar bibin bi peyamên xwe lêborîna xwe xwestin û silav ji mêvanan re şandin.

### Me bîryar daye ku em bibin dengê hevkariya kurdan

Li Lîlûz Otelê li Salona Konferansê di resepsiyona de, axaftina vekirinê ji hêla Gerînendeyê Giştî yê BasNûçe/BasHaberê Faysal Dağlı ve hat kirin. Dağlı di axaftina xwe de bal kişann ser dîroka medya kurdî û Kurdistanê û zehmetiyê li pêşiya medya ya kurdî û wiha domkir, " Em wek Koma BasMedya dixwazin bibin dengê hevkariya kurdan û ji wê sedemê me biryar da ku em ê bibin dengê yekîtiyê. Me li ser laper, ekran û radyoyan de Kurdistan gîhand hev. Em bi hêvî ne kû siyasetmedarên me jî siyaseta Kurdistana azad ava bikin û wê bigînin hev"

### "Pêwendiya çapemeniya kurd grîng e"

Endamê Lijneya Navendî ya Yekîtiya Niştimaniya Kurdistanê (YNK) Azad Cundiyanî dest bi axaftinê kir. Cundiyanî, ji ber ji çar perçeyên Kurdistanê, ronakbîr, siyasî û kesên grîng di vê panêlê de li hev civîyan e, kêfxweşiya xwe zimanî kir. Cindiyanî, ji ber vê derfetê afirandine, Birêz Botan Tahsîn û hemû xebatkarên Bas'ê pîroz kir û ji bo pêşwazî û malevaniya wan a hurmetdar spasiyên xwe pêşkêş kir. Cundiyanî, wiha peyivî: "Pêwendî û bandora çandî û siyasî ya navbera perçeyên Kurdistanê çiqas grîng be, ya navbera dezgehên çapemeniyê jî ew çend grîng e. Hêvîdar im ku rojekê em bi vî awayî li Qamişloyê jî li hev bicivin."

### "BasNews şopgera ronakbîriya 116'an e"

Şêwirmendê Serokê Herêma Kurdistanê û Endamê Lijneya Navendî ya Partiya Komunîst a Kurdistanê Zîrek Kemal jî di axaftina xwe de bal kişand ser xebatên ragihandina kurd ên Mîqdad Bedirxan û BasNews şanaz kir ku Bas, şopger û berdewama 116 salan e. Kemal got: "Ev çalakiya BasNews'ê hurmet û giramîdayîn e ji bo ew Pêşmergeyên ku Kurdistanê diparêzin. Pêşmerge, niha di eniyeke ku ji 1 hezar û 500 kîlometir dirêjtir e li dij DAIŞ'ê şer dike. Ev tekoşîn, tekoşîna gelê Kurdistanê ye. Meyldariya BasNews'ê jî, ji ronakbîriya 116 sal berê ku Bedirxaniyan dabû destpêkirin tê."



Ji Rojhelat, Bakur, Başûr û ji gelek dewletên Evrûpa jî gellek kes beşdarî bernameyê bûn. JI bajarên Bakurê Kurdistanê jî ji Amed, Êlîh, Mêrdîn,Wan, Şernax, Colemêrg, Riha, Bedlîs û gelek bajarên din jî beşdariyeke gelekî zêde pêk hat. Ji gellek zankoyên Bakûrê Kurdistanê akademîsyen xwendekar jî beşdarî çalakiyê bûn û wan jî da zanîn ku bernameya BasNûçe / BasHaber "Provaya Biçûk a Kongreya Neteweyî ye"

## Nûsîngeha Amedê hate vekirin

Piştî kokteyl û panelan, bi beşdariya siyasetmedar, akademîsyen, hunermend û kesên grîng, nûnertiya Amedê ya BasNûçe/BasHaberê hate vekirin. Di vê kokteyla piçûk a vekirinê ku hemû berpirs û xebatkarên rojnameyê tê de amade bûn de Botan Tahsîn axaftineke kurt kir û vekirina ofisa Amedê pîroz kir. Di kokteyla vekirinê de Parlamenê Berê Muayed Teyîb, Rawêjkarê Serokatiya Herêma Kurdistanê Zîrek Kemal, Akademîsyen Behrûz Sucajî, Siyasî û Akademîsyen Rr. Mûsa Kaval, Rawêjkarê Wezareta Rewşenbîrî ya Hikûmeta Herêma Kurdistanê Fazil Caf, Nivîskar Murteza Heyderî û Azad Berzencî û gellek rojnamegeran beşdarî lê kirin.



### "Kurdan Sykes-Picot pûç kir"

Prof. Dr Abas Walî dest bi axaftina xwe kir. Walî, bal kişand ser geşedanên dawî yên li Kurdistanê û angaşt ku van geşedanan peymana Sykes-Picot'ê betal kirî ye. Walî got: "Kurdên Bakur, Başûr, Rojhilat û Rojava êdî bi hev re pêwendîdar in. Ev cihê kêfxweşiyê ye. Ji ber sûdek li vê pêwendîdariyê kirî ye, ez ji Basnews'ê re spas dikim"

Babekir Dareyî ku bi ser navê Tevgera Goran beşdarî li Kokteylê kir jî di axaftina xwe de diyar kir ku Projeya Koma Çepemeniyê ya BasNews'ê erka rakirina sînorên di navbera Bakur û Başûr û tijekirina valahiya çandî û medyayî hilgirtiye ser xwe. Dareyî wiha got: "Xebata BasNûçe/BasHaber di warê netewî de jî pir grîng e. Ji bo nifşên nû bi kurdî binivîsin û bixwînin û ji bo perçeyên Kurdistanê ji rojeva hev agahdar bibin ev xebat pir grîng e"

Nivîskar Kurd Mueyed Teyib jî di kurte axaftina xwe de diyar kir ku Koma



Alî Qazî

## "Kurdistan ber bi serxwebûnê ve..."

Alî Qazî ku ji Rojhilatê Kurdistanê beşdar bû jî grîngiya çalakiyê destnîşan kir û wiha dest bi axaftina xwe kir: "Dema mirov ronak dibe civak jî ronak dibe û ev yek bandorê li siyasetê jî dike. Ji ber vê yekê, dema ku ronakbîr li dora rojname yan jî dezgeheke ragihandinê dicivin, ev yek bandoreke mezin li ronakbîriya civakê jî dike. Ez hêvî dikim ku ev xebata BasMedia'yê sûdê li pêvajoya çareseriyê jî bike.er'ê ya li Amedê jî, ji bo min kêfa ser kêfê ye. Di 22'yê Çileya 1946'an de, me Komara Kurd a Mahabadê olan kir. Temenê komarê dirêj nebû û me pir cangorî dan. Lê belê îro em dibînin ku em ji nû ve ber bi serxwebûnê ve diçin. Teqez, rojekê em ê bi ser bikebin. Bijî kurd û Kurdistan" Piştî vê axaftina Alî Qazî, beşdarên panêlê, rabûn piyan û bi coş li çepikan xistin.



Ragihandinê ya Bas'ê di derbarê yekîtiya Kurdistanê de erkeke grîng hilgirtiye û got: "Dema mirov li profîla vê salonê dinihêre, mirov baş têdigihîje ku vê erka xwe bi cih anî ye"

Serokê PDK/Bakur Sertaç Bûcak jî di axaftina xwe de grîngiya hebûna BasNûçe/BasHaber'ê ya li navenda Bakurê Kurdistanê grîng nirxand û wiha peyivî: "Ji bo ku Kurdistaniyên Bakurî bigihîjin agahiyên rast û geşedanên li Başûrê Kurdistanê bişopînin, hebûna BasNûçe/BasHaberê ya li Amedê pir grîng e"

Di resepsiyonê de her wiha Nivîskar Murteza Heyderî, Serokê Giştî yê Hereketa Azadî Ayhan Geverî, Parlamenê Berê yê HEP'ê Mahmûd Kiliç, Prof. Dr. Kadri Yıldırım, Endamê Meclîsa Partiyê yê HAK-PAR'ê Siracedin Sarı, Cîgirê Serokê Giştî yê PAK'ê Nuri Sınır, Akademîsyen behrûz Sucajî, Rawêjkarê Serokatiya Herêma Kurdistanê Fazil Caf, Nivîskar û Weşanger Azad Barzencî, Serokê Yekîtiya Nivîskarên Kurdistanê Azad Abdulwahîd, Parlamen Farhan Cewher, Mumtaz Alî, Prof. Mithat Sancar û Rêbiwar Seyîd jî bi mebesta spasiyên xwe pêşkêşî rojnameya BasNûçe/BasHaber'ê axaftinên kurt kirin.

### Panelên tirkî û kurdî bal kêşandin

Piştî Kokteylê, di 22'ê Sebatê de, dîsa li Liluz Hotel'ê hem bi kurdî hem jî bi tirkî panêlên bi sernavê 'Di Sedsalıya Sykes-Picotê Perspektîfên Pêşeroja Rojhilata Navîn û Kurdistanê' pêk hat. Di van panelên ku bi beşdariyeke mezin pêk hatin de, panela bi kurdî ji alî Midûrê Nûçeyan yê Rojnameya BasNûçe/BasHaber'ê Rawîn Stêrk ve hate modêrekirin. Di vê panelê de Prof. Abbas Walî bi sernavê 'Peymana Sykes-Picot û bandora wê ya Rojhilatê Kurdistanê' Prof. Dr Qedrî Yildirim bi sernavê 'Ji destpêkê heta niha Sykes-Picot, Rojava û bandora li ser Bakurê Kurdistanê' Nivîskar Bextiyar Alî bi sernavê 'Dagirkirin û encamên Sykes-Picotê û Grêka wê ya bi Başûrê Kurdistanê re' Dr. Kemal Sîdo bi senavê 'Ji Pesendkirina Sykes-Picotê û heta niha, bandora encamên wê ya li ser Rojava û bi taybetî Afrînê' nirxandinên xwe pêşkêş kirin. Her wiha Gerînendeyê Giştî yê Rojnameyê Faysal Daglı jî li ser babeta 'Sedem, encam û bandora Sykes-Picotê nirxandinên xwe kir. Di panela ku ji ber eleqeya mezin gelek kesan li piyan şopandin de bi taybetî baldariya beşa dawî ya pirs û bersivan bal kêşa.

### Xebatkarên BasMedya'yê serdana Hevşaredara Amedê kirin

Di çarçoveya çalakiyên vekirina nûsîngeha Rojnameya BasNûçe/BasHaberê de, hemu berpirs û xebatkarên Başûr û yên Stenbolê yên Koma Çapemeniya BasNewsê, herî dawî çûne serdana Hevşaredara Amedê Gulten Kişanak. Di hevdîtina vê serdanê de Kişanak, ji ber vekirina nûsîngeha rojnameyê kêfxweşiya xwe pêşkêş kir, ji bo lidarxistina kokteyl û panelan Bas Nûçe/Bas Haberê pîroz kir û serkeftinê xwest. Kişanak rola çapemeniyê ya li ser nêzîkbûna perçeyan grîng nirxand û got: "Em geşedanên dîrokî yên 100-150 salên dawî bi ser çapemeniyê ve dixwînin û agahdar dibin. Rojnameger tenê nûçeyan naweşînin, di heman demê de dîrokê jî dinivisînin. Ji ber vê yekê em damezirandina nûsîngeha Amedê ya rojnameya we grîng dibînin û ji we re serkeftinê dixwazin"

### Sazî, Dezgeh, partî û tevgerên ku beşdarî çalakiyan bûn

Di van çalakiyên ku rengekî Kurdistanî pêk anî de sazî, dezgeh, partî û tevgerên ku beşdarî li van çalakiyan kirin ev in: PDK, YNK, Goran, Partiya Komunîst(Hizbî Şiû, Yekgurtû, HDP, DBP, HAK-PAR, KADEP, ÖSP, PDK-Bakur, TKDP, Hereketa Azadî, Tevger, Sendîkaya Nivîskarên, PDNK, Yekîtiya Weşangerên Kurdistan, Serokatiya Herêma Kurdistanê, Yekîtiya Çapemeniya Kurdistanê...

## BasNûçe / BasHaber pira navbera Bakûr û Başûr e

Botan Tahsin jî di axaftina xwe de, ragihand ku wan bi belavkirina BasNûçe/BasHaberê xwestiye pirekê di navbera kurdan de ava bikin û wisa dest bi kar kirine. Tehsin her wiha da zanîn ku hîn saleke rojnameyê neqediya ye û dîsa jî rojname rastî eleqeyeke mezin tê û xebatkarên rojnameyê karên baş dikin. Tahsin axaftina xwe wisa bi dawî kir: "Li Bakurê Kurdistanê bi kedeke mezin niha vekirina saziya Amed'ê de pêk tê. Karmendên rojnameyê karekî mezin dikin. Koma BasMedya'yê bi karên xwe li tevahiya Kurdistanê bi baldariyê têne xwendin û tê temaşe kirin. Ez bi hêvîme ku li bajarê Kurdistanê yen din jî em ê ofisan vekin û dengê gelê xwe bilind bikin. Ji tevahî perçeyan û ji cihen cûda yên cîhanê heta vê derê hatine û îzdîhama di salonê de ji me re dide eşkerekirin ku proje çiqas serkeftiyê û ew ê karên mezin bike."



Fırat Anlı

## Hebûna BasNûçe'yê ya li Amedê cihê kêfxweşiyê ye

Hevşaredarê Amedê Fırat Anlı jî beşdarî Kokteylê bû û axaftinekê kir. Anlı, diyar kir ku ew bi hebûna BasNûçe/BasHaber'ê ya li Amedê pir kêfxweşin û got: "Îro em li Amedê bi zimanê xwe dipeyivin. Ev pir grîng e. Em şehîdên Şengalê, Kobanê û hemû Kurdistanê bi hurmet bi bîr tînin. Êş û azarên li Şengalê, li Kobanê û li Amedê têne kêşandin, heman êş û azar in. Ji îro bi şûn ve jî em ê ji bo yekîtî û hevbendiyê xebatên xwe bidomînin. Wek Şaredariya Bajarê Amedê, çi ji destê me bê em ê bikin."



# Xemla Serhedê BAZÎD



**Welat Baz**

Bajarê Bazîdê an jî 'Doğu Beyazıt' di nav tejena jorîn a çemê Mûradê de û li keleka quntarên Çiyayê Ararade cîh digre. Bajêr pira nav Serhed û Rojhilatê Kurdistanê ye. Bazîd di nav hêlîpanên 39 û 40 û di nav hêlîlarên 42 û 44an de cîh digre.

Li rojhilatê Bazîde Mako, li bakûr Qers û Îdir, li rojava Erzirom, li bakûrê rojava Agirî û li başûr jî Bedlîs û Wan hene.

## Erdnîgar

Xaka bajêr ji mêrg, mexer, gol, çiya û bilindahiyan pêk tê. Erdîma bajarê Bazîdê ji deryayê 1650 metre bilind e. Axa Bazîdê bi çiyayan ve xemilandiye. Çiyayê Agirî ê mezin û ê biçûk li Kurdistanê û li rojhilata navîn herî çiyayê bilindin. Bilindahiya van çiyayan seriya 5 hezar metreyî ye. Herwiha gelek çiyayên Agirî ê din jî li seriya 3000 metreyi ye. Pirê van çiyayan wolqanîkin û li derûdora xwe lawên bazaltîk reşandine. Çiyayekî erdîma Bazîdê ê din ji Çiyayê Tendûrek e.

Ji aliyekî din ve ji ber ku dora bajêr bi çiyayan ve hatiyê pêçan, helbet gelek derbend û gewer jî hene. Derbenda Horgov û Derbenda Hevreşim bajêr bi bakûr û rojhilatê bakûr ve girêdidin. Rê di van derbendan de derbasdibin û ji ber ku ev derbend bi pirani bilindin, zivistanan di bin berfê de dimînin.

Çiyayê Agirî wek sembola Bazîdê ye. Çiya û bajêr bihevre tên bîra mirov. Bazîd bê Ararad, Ararad jî bê Bazîd nabe. Ji ber vê yekê dîroka wan jî di nav hevde ye. Navê Araradê yekem car di çavkaniyên Ûrartoyan de derbas dibe. Herwiha ev nav di Tevratê de jî heye. Li gor vê pirtûka qedîm, keştiya Hezretî Nûh piştî tofanê li ser Çiyayê Araradê daniye.

Çiyayê Ararad an jî Agirî, deşta Rewanê û rasta Bazîdê ji hev diqetîne. Bingeha çiya li ser 1188 $km^2$ cîh girtiye. Çiya wolqanekî tefandiye. Araradê mezin 5165 metre bilind e. Li Ewropa û Rojhilata Navîn çiyayê herî bilind e. Li ser lûtkeyên Agirî rasteke di navbera 120 û 160 metre fireh heye. Piştî 4 hezar metreyî havîn û zivistanan çiya di nav berfê de ye. Ji bingehê heta lûtkeyan kutleya çiya ji kevirên bazaltê reş pêk hatiye. Ji vê sedême kesên ku temaşê dike, di bin heybeta Agirî de dimîne û çiya dîsa ji ber vê taybetiya xwe, ji gelek efsane, çîrok û destanan re bûye mekan.

Quntarê rojhilatê bakûrê Araradê serrasteke tûje û ber bi geliyê Yaqûd ve dirêj dibe. Gundê Argûrî û Manastira Yakûd a navdayî di 20ê Hazîrana 1840an de ji sedemê erezyonê tevî 1600 rûniştvanên xwe di bin xweliyê de mane. Ji vê çaxê vir ve li vê heremê xebatekî kolanê nehatiye kirin.

## Aborî

Li Bazîdê bi sedan malbat debara xwe bi lawirvaniyê dikin. Ji ber sedemên ku; li xaka bajêr zozan û mexerên fireh hene, qlîma hişke, gelek zewî ji kiştûkalê re nabe, lawirvanî di aboriya bajêr de rola girîng leyistiye. Herema Serhedê ne tenê li Bakûrê Kurdistanê, li hemû Tirkiyê, di warê lawirvaniyê de herema sereke ye. Bazîd jî di vê heremê de wek nawendeke vî karî ye.

## Çala Meteorê

Li Bazîdê li ser rêya deriyê Gurbulaxê 'Çala Meteorê' bal dikşine. Ev çal yek ji taybetiyên xweza ya Bazîdê ye. Çal 35 km dûrî Bazîdê ye. Çal di encama meteorekî ku di sala 1920an de ji esman ve ketiyê xwarê peyda bûye. Firehiya koncalê 35 metre û kûrahî jî 60 metre ye. Di salên borî de ev çal dibê hîn jî kûrtir be. Ji ber bê xwedîtiyê her diçe tije ax dibe. Ji sedema axê ser kevirê meteorê hatiye girtin. Di mehên zivistan û biharê de xwelî û ava ji ber erezyonê diherike çalê vêderê tije dike. Çala Meteorê a Bazîdê, li cîhanê piştî Çla Alasqayê a dûyem e. Ger li vê çalê xwedîtî bê kirin û bê nasandin, evder kare bibe devereke ku bala tûristan bikşîne.

## Dîrok

Bazîd heta sala 1938`an li rojhilatê cihe xwe ye îro 5 kilometre dûr, li ser zinnarên bilind bû. Ji ber cihê xwe bajêr fireh nedibû. Li ser vê yekê cîhê bajêr hat guhertin û navê bajêr jî wek 'Doğu Beyazıt' hat danin.

Dîroka bajarê Bazîdê û derûdore heta demên berî nivîsê dirêj dibe. Lê ji vê demê mixabin nîşane û bermayî nemane. Bazîd ji ber ku li ser reya hevreşimê bûye, di demên kevn de cîhekî rawestan û bîhndana bazirgan û koçberên bûye.

Berî zayînê di salên 600an de jî li heremê desthilatiya Ermeniyan destpêkir. Persî ku demekî kin heremê bidestxistin, di salên 331an de, deverê dan Artêşa Îskender. Piştî mirina Îskender Kurdistan û herem di nav fermandarên wî de hat parvekirin û Ararat wek perçeyekî dewleta Selokîdî hat hesibandin. Selokidî ku li ber Romayiyan têkçûn, herema Araradê ket destê begên Ermeniyan. Wek hemû Mezopotamya yê Bazîd jî, di vê pêvajoyê de her tim di nav Romayî û Persiyan de bûbû qada şer.

Bazîd heta damezirandina Komara Tirk wek sencaxekî hat birevebirin. Piştî avabûna komarê statûya bajêr wek parêzgeh hat guhertin û Îdir û Avkevir wek navçe bi Bazîdê vê hatin girêdan. Di sala 1927an de jî nawenda parêzgehê wek 'Qerekose' hat guhertin û Bazîd bû Navça Agirî.

## Serhildana Araradê

Kirasekî spî li çiya lefiya bû. Lûtkeyên Araradê di nav ewrên spî de wendabûbûn. Kurdistan di dema wejinê de bû.

Roja 16ê Gulana sala 1926a ye. Li quntarên Çiyayê Araradê deng bi tifingan ketiye. Alaya Cendirmeyên Tirk, li Bazîdê li gundê Mûsonê pey Brahîmê Heskê Têlî û zarokên wî ketine. Ev teqînên fîşengan wê li Kurdistanê bibe îşareta serhildaneke nûh.

Brahîm Axa, yanê Broyê Heskê Têlî ji Eşîra Celalî ji Malbata Hesê Sorî bû. Di dema Şerê Cîhanê ê yekem de, tevî eşîr û mêrxasên xwe li dijî Artêşa Rûs şerkiribû û nehiştibû hêzên Rûs têkevin herema Araradê. Piştî şer cîhê ku Artêşa Rûs valadikir ji alî hêzên Ermenî ve dihat dagirkirin. Paşê di navbera hêzên Bro û Ermeniyan de şer derketin, Bro bajarê Bazîdê ji Ermeniyan stend û teslîmê Artêşa Tirk kir. Piştî van bûyeran Broyê Heskî çû li mala xwe li Bazîdê rûnişt.

Di sala 1925an de Serhildana Şêx Saîd rûda. Bro, tevî leşkerên Tirk, pêş li serhildêrên Kurd girt û nehişt ku ew ji herema eşîra wî derbasî Îranê bibin.

Artêşa Tirk serhildana Kurdan tefandibû û dest bi kuştin, wêrankirina gundan û sirgûnê kiribû. Kurdistan di nav agir de bû.

Bro ji xwe û ji dostaniya Tirkan ewle bû. Ji wan re xizmetên mezin kiribû.

Heta roja 16 Gulana 1926an. Vêca dora wî hatibû. Tirka biryara sirgûna Bro jî dabûn. Piştî ku Bro bihîst dewletê biryara sirgûna wî dane û cendirme avêtine ser mala wî, berê xwe da asîmanan û gaziya xwedê kir: Tifinga min bigîjîne min bes e!

Serhildana Araradê a ku di bihara sala 1926an teqiya û heta havîna sala 1930an domkir, wiha destpêkirbû. Sêrhildêrên Serhedê di nav lat û kevirên Agirî de wenda bûbûn. Hijmara wan qasî 30 kesî bû.

**Piştî serkeftinên leşkerî û siyasî, bi biryara Xoybûnê li heremê Komara Araradê hat damezrandin. Agirî nawenda komarê bû.**

Li gor esasên komarê rêvebiriya Xoybûnê wiha bû: Broyê Heskê Têlî walî, İhsan Nûrî Paşa jî fermandar bû. Wilayeta Agirî jî wiha hatibû tesbîtkirin: Fermandarê Ewlekariyê Temîr Axa, Qeymeqamê Navçeya Korxanê Mele Husên Efendî, Mûdurê Xopana Botî İbrahîm Axa, Mûdurê Xopana Ortî Hesen Efendî û Mûdurê Xopana Qorî Musa Berkilî Axa bû.

Herwiha li Komara Araradê hin xebatên bingehîn ê dewletbûnê jî hatibûn kirin. Hêzên Kurd wek artêşekî nîzamî hatibûn rêxistinkirin. Şerwanên Araradê wek leşkerên nizamî uniformayan lixwe dikirin û li ser unîformayên wan işaret û remzên Xoybûnê hebû. Ala Kurdistanê li de-



verên ku di destê serhildêran debû hatibû daleqandin. Leşkerên Tirk ê dîl dihatin girtin, bi awayekî nîzamî serbest dihatin berdan û li gor huqûka şer li wan muamele dihat kirin. Zebtên hemû çalakî û xebatan dihatin girtin.

Dîsa bi navê 'Hilbe Agirî' sirûda netewî a Komarê hebû û bi navê 'Agirî' kovareke siyasî û kulturî dihat derxistin.

Komara Araradê ku heta sala 1930an domkir, di sala 1927an de hatibû damezrandin.

## Qesra Îsheq Paşe

Qesra Îsheq Paşe a navdayî ku Bazîdê bi dinyayê daye naskirin, di sala 1784an de di dema serweriya Îsheq Paşa de hatiye avakirin. Çêkirina qesrê bi goreyî hin agahiyan 99 sal û bi goreyî çavkaniyên seyyahên biyanî dora 15-20 salan domkiriye.

Qesra Îsheq Paşa 8 km li başûrê rojhilatê Bazîdê li ser zinnarên bilind hatiye avakirin. Avahî wek qomplekseke qesr û kelêyê ye. Ev qesr ji alî cîhê avabûnê, ji alî huner û ji alî rêkûpêkbûna mekanê xwe ve berhemeke bêhempa ye. Avahî wek kelêyên Ûrartoyan li ser zinnarên bilind ku gihandina wê zahmete hatiye danîn. Ji mînakên xwe cuda, derû dora qesrê bi dîwaran ve hatiye rîsandin. Avahî li ser 5750 m2 hatiye lêkirin. Beşa ku wek cîhê rûniştinê tê bikaranin dû qat e. Di avahiyê de 366 ode hene. Di her odeyekî de tifikekî heye û dû û germa ku ji van tifikan dertê, di nav valahiyen diwaran de te gerandin û bi vî awayî zivistanê avahî te germkirin. Herwiha di nav qesrê de bi kunkan pergala avbelavkirinê jî hatiye çekirin û ava ku ji çiyayan tê anîn li hemû avahiye tê gerandin. Qesra Îsheq Paşa ji alî hostayên Xelatê ve hatiye çêkirin.

Qesr bi gelemperi ji dû hewş û ji avahiyen nav van hewşan pêk tê. Hin avahiyen hewşa yekem xerabûne. Deriyekî ku serkeftinê îfade dike ji vê hewşê vedibe nav qesrê. Sitûnên derî ji bazaltê zer hatiye çêkirin, ku ew jî li ser qaîdeyên reş hatine danîn. Li ser van sitûn û qaîdeyan motîvên çargoşe û kûbîk ku bi nebat û lawiran hatine neqişandin hene. Li ser sitûnan şêr li hev dinêrin. Ew şêr sembolên ewlekarî û xofê ne. Li hewşa pêşîn a fireh kaniyekî ji mermer û qurfa notirvanan heye. Deriyê hewşa navîn jî bi motîvan hatiye xemilandin.

Gelek mekanên qesrê di vê beşê de cîh digre. Deriyê li milê rastê vedibe, cîhê rûniştina mêran, yanê qurfa silavdayinê ye. Piştî pêlikekî heft derencik mirov dikeve salonekî fireh. Dirêjiya vê derê 18 metre ye. Evder cîhê koşka şaneşîn e. Çar qonsulên darîn ku li kêleka dîwaran cîh digrin rêçên kûr ê hunermendiya Ûrartoyan diparêzin. Wek sembola bilindahiya aqlê însan, li bin van qonsulan serê mirovan hatine danîn. Qertelê beşa navîn dîqetê, şêr jî hêzê temsîl dike.

Deriyekî xemilandî ji qurfên mêran vedibe hewşa mizgeftê. Mizgeft di nav vê derê û haremê de cîh digre. Minara mizgeftê nêzî tarzê baroq e û li ser bingehekî çargoşe cîh digre. Ev minare bi serê xwe berhemeke giranbiha ye. Minare bi kevirên sor û rengên vekirî hatiye rîsandin. Li ser kumê kevirîn alemeke misîzer hatiye çikandin. Şerefe ya minarê dîmeneke nazik dide vê avahiyê. Bi 99 pêlikan mirov dertê ser minarê û ji vir kare hemû deşta Bazîdê temaşe bike.

Midbex û hemama qesrê li ser bingeheke çargoşe bilind dibin. Herwiha qûbeyên ser van avahiyan, zîgûratên kevn ê Kurdan tîne bîra mirov.

Herwiha di nav qesrê de gelek embarên zad û zexîrê, gelek atolye, deverên nobedar û leşkeran û zîndan jî heye. Li dervayê qesrê jî medreseyekî heye. Li biniya zinnaran jî xaniyên wê demê cîh digrin.

Mixabin ev newazeya dîrokî, Qesra Îsheq Paşa ji bêxwedîtiyê di nav xeterê de ye. Qismekî mezin ê qesrê ji bilî mizgeftê, ji alî dijminên dîrok û mirovahiyê ve hatiye taxrîp kirin. Qatên jorîn û hin dîwarên avahiyê hatine xerakirin. Çemberên madenî û gulleya ku di xerca mizgeftê de hatiye bikaranîn jî hatiye dizîn. Kevirên ku ji dîwarên qesrê hatine derxistin di avakirina bargeha leşkeri a Bazîdê de hatiye bikaranîn.

Berhemên din

Li rojhilatê Qesra Îsheq Paşa, bi navê 'Kamo' keleyekî heye. Kela Kamo b.z. di sedsala 8an de ji alî Ûrartoyan ve li ser zinnarên tûj hatiye avakirin. Ev kela îro wek xerabeyekî ye.

Tirba şaîr û fîlozofê mezin Ehmedê Xanî li rojhilatê Qesra Îsheq Paşa, li kêleka zinnarên Belebirc, di hewşa medresa bi heman navî de ye.

Tirba nivîskarê Mem û Zîn ji alî gel ve wek ziyaretgah û cîhê mesîrê tê pîroz kirin.



# Bazid u Tofana Nûh



Keştiyekî çêke û ji hemû jîndaran cotekî têxe nav keştiyê. Wê tofanekî rabe û ji rûyê erdê jiyanê paqij bike.'

Yezdanê Mezin ji Nûh re wiha gotibû.

Hemû wersiyonên efsaneya tofanê kêm zêdê bi van peyvan destpêdike. Tofana Nûh di dîroka ser rûyê erdê de, belkî jî efsana yekem e ku bûye malê hemû mirovahiyê û di çandên gelek civak û netewan de cîh girtiye. Li gor mîtologan ev cîwanok bi cudatî kêm zêde bi sedan sal berî zayinê di nav hemû mîtolojiyên şaristaniyên demê de cîh girtiye. Yanê her qewmekî Nûhekî û efsaneyekî tofanê hebûye.

Lê hemû têgeh û fîgurên çîroka tofanê ku ji alî însanê kevn 4000 sal berê bi nivîskî hatiye qeydkirin, Kurdistanê, welatê Kurdan îşaret dike. Cîhê ku tofan destpêkiriye Mezopotamya ye û cihê ku lê bidawî bûye û însan cereke din li rûyê erdê belav bûne Kurdistan e.

Çiyayê Agirî an jî Ararad di Tewrat û di hin çavkaniyên din de wek cîhê ku Keştiya Nûh lê daniye tê naskirin. Li gor vê pirtûka qedîm, Keştiya Hezretî Nûh piştî tofanê li ser Çiyayê Araradê daniye.

Efsana Tofana Nûh navê Araradê ji hezaran sal virve heta roja me aniye. Ji ber ku pirtûkên pîroz Araradê îşaret dikin, ev çiya bûye sehneya lêkolînan. Cara pêşîn di sala 1829an de zanist Frederik Parot, di sala 1876'an de jî Jeymîs Brîs di vî warî de li Araradê hin lêkolînan kirin. Paşê jî gelek teolog, oldar, lêkolînvan, rojnamevan û dîrokzan li ser Çiyayê Araradê li rêçên Keştiya Nûh geriyan. Di nav wan de astoronotê Amerîkî Jeymis İrwîn jî hebû. İrwîn di sala 1983an de hatibû heremê û digot wî Keştiya Nûh ji fezayê li ser Araradê dîtiye.

Di vî warî de xebatekî li gundekî Bazîdê, li Mesarê hatiye kirin. Mesar li ser rêya İranê ye û ji sînorê Rojhilatê Kurdistanê 3 kîlometre dûr e.

Bagrat Xalatyan

# Di şopa destan û zargotina kurdî de



Mehmet Gültekin

Gerok, mîsyoner û zanyarên biyanî ji salên 1930'i pêve li Kurdistanê dest bi berhevkirina çîrok, destan û qisetên civakê kirine. Piraniya wan ên ku di nîvê yekem a sedsala 19'an de hatine berhevkirin ji çîrokan û efsaneyan pêk tên ku berhevkarê wan bi gelek caran gerok û mîsyoner bûne. Wan di pirtûk û gotarên xwe yên bîranînê de carina cih dana van nimûneyan û bi wan pirtûkên xwe xemilandine, dewlemendtir kirine.

Ji salên 1850'i şûn de êdi zanyaran jî raste rast ji bo xebatên xwe ên derbarê ziman, wêje û zargotina kurdî de kilam, destan, çîrok, qiset û metelokên kurdî berhev kirine. Hin di sala 1856'an de Peter Lerch li ser daxwaza Zanîngeha Pêtersbûrgê çûbû bajarê Roslawl û çar mehan di nava kurdên ku di şerê 1854-55'an de ji aliyê rûsan ve hatibûn dîlgirtin çîrok û stranên bi zaravayên kurmancî û dimilî berhev kiribû û ew di pirtûka xwe ya nû de ji bona lêkolînên xwe yên li ser zimanê kurdî weke bingeh bikaranîbû. Ji bilî hin xebatên mayîn ên di vê derbarê de divê em berhevokên zanyarên Eugene Prym, Albert Sosin, Le Coq, Hugo Makas û Oskar Mann jî destnîşan bikin, yên ku di nîvê duyem a sedsala 19'an heta destpêka sedsala 20'an ji herêmên cûda gelek nimûneyên zargotina kurdî berhev kirin û di xebatên xwe yên akademîk de çapkirin.

Di dawiya sedsala 19'an de komek ji pispor û zanyarên ermen jî gelek kilam, destan û çîrokên kurdî ji dengbêj û çîrokbêjen kurd û ermen ên ku ew bi zimanê kurdî distran û vedigotin berhev kirin û weşandin. Yek ji wan xebatan bi sernavê "Berhevoka Êminiyê ya Etnografyayê" di sala 1904'an de li Moskovayê hat weşandin. Di vê derbarê de li gel navên wek S. Haykuni û Komitas navê Bagrat Xalatyan jî derketiye pêş.

Bagrat Xalatyan li dora 1860'an de hatiye dinê, li Aleksandrapolê ango Gumri ya îro jiyan kiriye, di zanîngehên li Moskova û Almanyayê de xwendiye û bûye pisporê antropolojiyê û dîrokê. Ewî hin xebatên balkêş di derbarê zargotina kurdî de amade kiriye û weşandiye.

Xebata Bagrat Xalatyan a sereke di warê zargotina kurdî de berhevokek e ku ji 13 destanên epîk yên kurdî pêk tê. Bagrat Xalatyan ev sêzdeh destan wergerandiye bi ser zimanê elmanî û ew di salên 1905-06'an de weke rêzenivîs di govara elmanî ya bi navê Zeitschrift des Vereins für Völkerkunde/Govara komeleya zanyariyên gel de weşandiye. Ev berhevok pişt re gelek caran bi elmanî wek pirtûk jî çap bûye.

Di para destpêkê de nivîskar erdnîgariya Kurdistanê, ku goreyî wî sînorên vî welatê ji çiyayên li rojhilatê Qeyseriyê destpê dike heta Bexdayê diçe, ji wir jî ber bi bakûr heta Adirbaycanê dirêj dibe. Bagrat Xalatyan pişt rê bi berfirehî li ser dîroka kurdan heta kûraniya serdemên beriya zayînê radiweste, qala herêm û bajarên sereke, baweriyên olî û jiyana kurdan a li deşt, zozan û bajaran dike. Xalatyan her wiha agahiyan di derbarê ziman, çand û wêjeya kurdan de jî bi awakî pisporane dide.



Di dawiya vê parê de ew destanên kurdî ên di pirtûkê de cihgirtî şirove dike û bi kurtasî dibêje: "Ev destanan dikarin bi rastî jî weke mircanên helbestkariya kurdan bên hesibandin. Jiyana wan a azad di nav çiyayên asê de bûye sedem ku wan kilam û efsane, meqamên bi aletên muzîkê wek bilûr ên bêhampa û dewlemend afirandine û bi vî awayî bûyerên civakî, doz û şerên pêşiyên xwe, serfiraziyên mêrxasan ên ku dilketiyên xwe ji nav komên neyaran rizgar kirine, pesndayîna bedewiya dilketiyên xwe û mirina bêmirazî ya du evîndaran tînin ziman. Di van berheman de her wiha mînakên qerektera kurdan ên gelek balkêş jî diyar dibin."

Bagrat Xalatyan di dawiya her destanê de bi têbiniyan hin taybetiyên bûyerên destanê şirove dike, salixê cih û war û yên kesayetiyên ku di destanê derbas dibin dide û agahiyan derbarê çavkaniyên destanan de jî diyar dike. Hin ji wan dengbêjên ku ev destan sêwirandine kurd in û çendên ji wan jî ermen in ku bi kurdî strane.

Bi saya vê xebatê em ji navê gelek dengbêjan ên ku di sedsala 19'an de jiyane agahdar dibin, wek mînak destana Siyabend û Xecê ji zarê dengbêj Keleşê Evdile, kurdekî êzidî ji Kerwanseraya girêdayî Rewanê hatiye nivîsîn, ya Leyl û Mecnûn û Hösbeg ji dengbêjê bi navê Sadiq, destana Mem û Zîn û ya Neçaroxlî ji kurdekî êzdî ê bi navê Miho, her wiha Sêva Hacê ji Aziz Tumasyan û destana Delu Hemze jî ji Petros Vertoyan Xosroviyan hatine guhdarî kirin û nivîsîn.

Xalake mayîn ê balkêş di vê xebatê de ew e ku komponîstê navdar ê ermen Komîtas Norayên van destanan amade kiriye û Bagrat Xalatyan ew jî pê re weşandiye.

Di dawiya xebata xwe de Bagrat Xalatyan li ser wateya mîtolojîk an van destanan bi berfirehî radiweste. Gorayê ramana wî di wan de gelek destnîşanî hene ku ew ji serdemên herî kevnare, ji heyamên asuriyan, babîlon û Mezopotamya'yê hatine û ketina nav van destanan. Ew şiroveyên qehremanên destanan, qerekter û tevgerînên wan di gelek xalan de dişivîne ên ji destanên kevnarê ên grêkan, romeran û îraniyan. Bagrat Xalatiyan pê re destnîşan dike ku destanên wek Siyabend û Xecê, Sêva Hacê û Hamûtê Şengê ji destpêkê heta dawî bi taybetiyên jiyana kurdan, baweriyên wan ên ji serdemên kevnare û bi kevneşopiyên wan hatine xemilandin.

Bagrat Xalatyan bi berdewamî berhevdana destan û çîrokên kurdî û yên ermenî jî dike û gelek mînakên ku wekheviya hin bawerî û kevneşopiyên kurdan û ermenan destnîşan dike. Jixwe ev herdu miletên ku bi hezarsalan li ser heman erdnîgariyê wek cînar jiyan kirine û rojana bi hevre di nav danûstendinê de bûne, bê nebê di her awayê jiyanê de û di cîhana xem û xeyal û fantaziyên xwe de yên ku di destanan de jî eşkere dibin bandorên kûr li ser hevdu hîştine ku şopên wan heta serdema me jî diyar in.




## Naveroka vê berhemê wiha ye:

1. Destpêk - Welat, gel, jiyan û helbestvaniya kurdan-
2. Siyabend û Xesarê an jî serê Sîpanê
3. Siyabend
4. Leyl û Mecnûn
5. Leyl û Mecnûn(2)
6. Mem û Zîn
7. Sêva Hacê
8. Hamutê Şengê
9. Kerr û Kulik
10. Ababalaq
11. Mem û Zîn(2)
12. Hösbeg
13. Dalu Hemze
14. Neçaroxli
15. Wateya mîtholojîk ya destanan



Weşanxaneya Delalê

# Govenda zarokên kurd

Hemrîn Amed




Her çend komele û saziyên kurdan ên ziman kêmbin û li Bakurê Kurdistanê rê li ber perwerdehiya zimanê zikmakî hatibe girtin jî kurd hem bi xebatên şexsî û hem jî bi vekirina komeleyan û çapkirina kitêbên zarokan dixwazin êrîşa li ser kurdî bişkînin da zarokên wan ji tehdeya asîmilasyonê xelasbin. Bi boneya ku zarok fêrî kurdî û çanda xwe bibin li Başûrê Kurdistanê qenaleke televizyon bo zarokan hatibû vekirin û piştî wê li Bakur jî qenaleke din bi heman hincetê dest bi wêşana xwe kiribû. Hin wêşanxaneyên kurdî jî di bin bana xwe de pirtûkên zarokan çapdikin û hin jî bi navekî din dîsa têkildarî wêşanxaneyê xebatan dikin. Li Êlihê jî xebateke bi qîmet ya bo zarokan hat destpêkirin. Weşanxaneya Delalê ku wê tekane bo zarokan berheman çapke, govar, pirtûk û her cûre wêşanên bo zarokan bimeşîne dest bi çapkirina pirtûkan kir û çend berhem jî derçûn. Berpirs û edîtorê weşanxaneyê Aydın Tekin di derheqê avakirin, sazkirin û nêzikahiya wêşanxaneyê bi BasNûçe'yê re axivî û projeyên xwe yên di derbarê zarokan de eşkere kir.

Tekin ragihand ku li Tirkiyê zimanê fermî yê perwerdehiyê tirkî ye û li ji bilî zimanê tirkî bi zimanên din perwerde pêk nayê û kesên ku ne tirk bin bi asîmilasyonê re rû bi rû dimînin û ev yek jî bûye sedem ku zarokên hemû miletên cûda bi tirkî biaxivin û perwerde bibin.

### Ferbûna kurdî û danîna Weşanxaneya Delalê

Wêşanger Tekin bal kişan ser asîmilasyona dewleta Tirkiyê jî û amaje bi wê yekê kir ku li hemû erdnigariya Kurdistanê asîmilasyon pêk hatiye û serdestiya zimanê tirkî gihiştiye hemû çiya û gundên Kurdistanê jî û dayikên kurd jî êdî bi tirkî diaxivin û ji bo ku ew rê li ber asîmilasyonê bigirin wan dest bi karê weşangeriyê kiriye. Tekîn wiha berdewam kir: "Li bajar, çiya, navçe û gûndan cihê ku asîmîlasyon negihîştiye nemaye. Proje ya me ji bo mûdxelaya van polîtîkayan e."

Her wiha Aydin Tekin da zanîn ku ew jî bi asîmilasyonê re rû bi rû mayê û demeke dirêj bi tirkî axiviye û jiyana xwe bi tirkî sazkiriye û dû re li xwe werqiliye û dest bi fêrbûna zimanê dayikê xwe kiriye. Tekin proseya avakirina weşanxaneyê û dûrketina xwe ya ji asîmilasyonê jî wiha eşkere kir: "Ji bona ku ez zimanê dayika xwe ferî keçika xwe Delalê bikim min hewl dida. Lê min jî baş nedizanî. Min dest bi hînkirina zimanê xwe kir. Sazkirina weşanxanê jî di wê wextê de dest pê kir. Ji bona min pevajoyek pir dijwar bû."

### Giringiya kreşên zarokan

Di berdewamiya axaftina xwe de weşanger Tekin da zanîn ku nebûna kreşên zarokan yên kurdî jî dibe sedem ku zarok bi lez têkelî asimilasyonê bibin û ji çand û kultura xwe dûr bikevin. Tekin eşkere kir ku kreşên zarokan hewcedariyên zarokan dabîn dikin û wî hewl daye ku kreaşn veke serdana şaredariyan jî kiriye û sê kitêb jî amadekiriye. Tekin wiha domand: "Ji bona ku zimane dayikê were jiyan kirin zarokxaneyên bi kurdî pir giring in. Zanebûna zimanê dayikê, perwerdeya zimanê dayikê, bîra dîrokê, çand, pêşketina şexsî û bi civakê re hevdengiyekê çêdike. Di sala 2010'an de ez li ser perwerdeya pêş-dibistanê pirr disekinîm û piştî wê demê tûnebûna zarokxaneyan min pir di êşand. Ji bona ku zarokxane bi zimanê dayikê vebibin min gellekî hewl da. Pirîcaran ez çûm Amedê û min bi şaredariya re hevdîtina kirin.. Dema ku min ew hewl didan kitêbên pêş-dibistanê Xalxalok û pirtûkên çizgiyan Xêzên Perverdekirinê derketin."

Her wiha Aydi Tekin eşkere kir ku ji sala 2011'an heta niha ew bi pedogagan re kar dikin û ji bo her temenî wan destepirtûk çapkirine û herî dawî jî ji bo zarokan pirtûkeke muzîkê belavkirine û ew jî di bin qontrola pedagoga de hatiye amadekirin. Tekin wiha domand: "Di sala 2011'an de me dest bi projeya berî dibistanê kir. Ji bona berî dibistanê me setek çêkir û ji wê demê heta niha set û tevî pirtûka mûzîkê bi tevahî me pirtûkan xwe ya 8 emîn jî derxist. Di projeyê de gellek akademîsyenên zankoyê hene em bi wan re di peywendiyê dene. Disa beriya ku pirtûken me derdikevin ji aliyê hevalên me yên pisporên pedagojiyê biberfireh tên kontrol kirin. Me herî dawî pirtûka mûzîkê amade kir bi wê mabestê ji, me bi mûzîsyenan re karekî hevpar kir û pisporên pedagojiyê jî berfîreh li ser wê pirtûkê rawestiyan."

### Koroya zarokan

Weşanger û edîtor Tekin da zanîn ku ew ne tenê kitêban belav dikin lê weşanxaneyê koroya zarokan jî avakiriye û di wê çerçoveyê de zarokên kurd derdixin ser dike û dixwazin bi muzîkê jî balê bikşînin ser zimanê, muzîka û çanda kurdî. Tekin xebatên koroyê jî wiha eşkere kir: Mamoste û zarokên endamê koroyê, li dibistanê di odeyên sar de xebatên xwe didomînin. Em di bin şert û mercên zor û zehmet de bi îmkanên xwe kar dikin. Koroya me ji 20 zarokan pêk tê, mamosteya me Songül Çakmak bi wan zarokan re yek bi yek eleqedar dibe."

Her wiha Tekin da zanîn ku ew ê ji bo zarokên Şengalê û Kobanê di 6'ê Adarê de li Diyarbekirê li Navenda Çandê ya Cegerxwîn'ê konsertekê bidin û dahatên konsertê jî ji zarokên Kobanê û Şengalê re bişînin.

## Keremê Anqosî:

# Soveyet hilweşiya em jî bûn garisê ser sêlê

**Çetoyê Zêdo**

Di nava civak û siyaseta kurdan de pirî caran gotina, 'pênc parçeyên Kurdistanê' tê bihîstin. Helbet ew gotin ne gotineke pûç û vala ye û ji sedemên dîrokî gelek argument piştgiriya vê gotinê dikin. Başûr, Bakur, Rojava û Rojhilat û pê re jî Kurdistana Qafqasya'yê... birîndarî û koçkirina kurdan ya herî demdirêj ku êdî qalik girêdaye, dibe ku hal û ehwal a kurdên Qafqasya'yê be. Şer û pêvçûn, kuştin û jandariya li herçar parçeyên Kurdistanê bi bandoreke xeternak, beriya bi sedan salan berê gelek kurdan daye çol û çolistanên Qafqasya'yê. Di nava van de jî kula ku xwîn herî demdirêj jê herikiye jî bêguman kurdên êzdî ne. Lewma di çîrok û çîvanokên êzdiyan de, di stran û şînên wan de pêyv û hevokên ku meriv bi giranjaniya wan ji jiyanê pûç dibe agirê xwe gîhandina birîna ku îro dîsa li ser êzdiyan olan dide...

Belê kurdên êzdî ku li Qafqasya'yê bi alîkarî û piştgiriya Sovyetê hewldane ku çand û rengîniya jiyana xwe ya kurdewar bigîhînin roja me, piştî ku Sovyet hildiweşe bê xwedî dimînin. Yek ji wan kesên ku di vê qadê de jî keseran dikêşe, Keremê Anqosî ye. Anqosî ku di temamiya jiyana xwe de li ser çand, huner, ziman, folklor û zimanê kurdan junî û tiliyên xwe pûç kirine, ji kurdên herçar parçeyan hinekî bi gazinc e. Keremê Anqosî ku pirsên me bersivandin dibêje ku bi hilweşîna Sovyetê re ew jî weke garisê ser sêlê belav bûne û ji ber ku kesek piştgiriya wan nake, çanda kurdên Qafqasya'yê her ber bi mirinê diçe. Anqosî dibê, "Ewqas festîval û bername têne çêkirin. Ma dema ku ji vir jî hunermendekî vexwînin wê dinya xira bibe?" Va ye gotûbêja me ya bi Keremê Anqosî re...



**Cenabê we di hemû jiyana xwe de ewqas kar û bar hilgirt. Lê niha hûn bi çi re mijûl in?**

Ez 17 salîbûm dema min dets pê kir û wê demê jî hezar tişt hebû... Ez niha nema wek berê dikarim bixebitim, êdî ne cahil im, nexweşî û extîyarî nahêle ku ez bixebitim. Karê Radyoyê heye û divê kar bikim, ya din jî li vir êdî rewşa me her ku derbas dibe xerabtir dibe.

**Jiyana kurdên Gurcîstanê li gora berê çawa ye?**

Berê Sovyetê û hukumeta wê alikariya me dikir. Sovyêt ji bo çanda me kurda bi xêr bû lê niha tiştek tune û xelkê me feqîr e, niha hertişt bi pera ye. Her ku diçe çand û jiyana kurdên li vir kêmtir û xerabtir dibe.

**Civak û hunara kurdî niha li Gurcîstanê di çi rewşê de ye?**

Çanda me kurdan niha di halekî giran de ye. Lê heyf, wexta Sovyet hilweşiya gelek hunermend, nivîskar û şanoger tev de çûn belav bûn. Her yek bi aliyekî de şemitî. Hemû tiştên me bi Sovyetê re hilweşiya, lê tu yê bêjî ji bo kurda hilweşiya, her tiştê me jî hilweşiya.

**Dema mirov bala xwe bide hemû sazî û dezgeyên Gurcîstanê, bi pêşengî û alikariya cenabê we çêbûne. Li Tiblîsê şanoya kurdî çawa pêk hat?**

Bi xwendekariya xwe re min di 1956-57'an de, cara ewil organîzasyonek ji bo civata kurdên Gurcîstanê pêk anî. Bi navê "Lijneya bi xortên kurdan re xebat" di bin bana komîteya şaredariyê, ya komeleya qomunîstên ciwan ya Tiblîsê me ava kir û heta 1975'an jî min serkêşiya wê kir. Ji bo ku bixebitin min cihê komê da wan mamosteyê şanoyê. Min çiqas alikari dida wan tiyatroyan, ew bû Cerdoyê Esed. Ji bo xebatê di studyaya şanoya de Cerdoyê Esed, şaîr bû, wî perwerdehiya ziman dida şanogeran. Hemû cahil û xwendevanên me di nav Yekitiya Cahilên Kurdan de kom bibûn. Çend mehan xebitîn, Cerdo Esed ziman hîn dikir. Wê çaxê keçeke enstituya şanoyê temam kiribû, wê di şanoya rûsan de şêwirdariya rejisorê mezin kiribû, navê wê Zînê Taloêva ye, niha li Emerika dimîne. Min jêre got bila were, piştî Cerdoyê Esed, Miraz Caferov hat, di redeksiyana ermenan de bû, Miraz li Gurcîstanê gelek şano liderxist. Şuxlê me yê şanoyê baş bû, hukumetê alikarî dikir. Andok Çildergûşî û jina Andok, Kulîlk jî hebû. Ji wan şanogeran hin kes, niha li Gurcistanê dijîn.



**Niha çima şano û hunera kurdî li vir ne zindî ye?**

Berê bo van karan qeweta me digîhîştê lê niha em extiyarbûn nema ji min tê. Ez berê di navenda qomiteya partiyê de dixebitîm. Heger hezkirin û baweriya wan şanogeran tuneba bo miletê xwe, bi hezkirin û ji dilê xwe, bi çand û şanoya xwe xerc dikirin, bê pere dikirin. Min jî bo miletê xwe kar dikir, ez welatparêz bûm. Bav û kalê min ji welatê xwe derketibûn, xwendin bo me guneh bû, lê hukumetê em bi zorê dibirin mektebê. Lê niha em ji hev belav bûne, îmkanên me tune ne. Wexta ku em dîroka xwe nizanibin em ê bihelin herin..

**Piştî hilweşîna Sovyetê, li Gurcîstanê hûn bi çi mijûl bûn?**

Berê li vir salê pênc- şeş caran şevên taybet dihatin organîzekirin. Heta hilweşîna Sovyetê salên baş bûn, niha tiştek nema. Hukumet ji me re xêr bû, xwendin bû çand bû, pîşenge bû; ji Êrîvanê hunermend dihatin diçûn. Salonên mezin hebûn, hukumet piştevaniyê me bû. Piştî ew têk çû ew hemû qad ji holê rabûn û ez jî bi gelek karên din rê mijûl bûm. Lê ew kar jî dîsa hemû karên ronakbîrî û têkildarî çand û folklora kurdî bûn. Heta demeke kurt jî karê min tev de didomîn. Lê niha êdî kalbûn bi ser min de tê û nema dikarim karên xwe bidomînim. Xwezî gencitî berdewambûya û min bo çand û folklora xwe, bo dîrok û zimanê xwe, bo gel û hunera xwe kariba gelek karên din bikirana. Lê dîsa jî ez çi bêjim, helbet ciwan û ciwanmerdên me kurdan pir in û ewê di ti qadan de valahiyê nehêlin.

**Têkiliyên we bi Kurdîstana Bakur û Başûr re çawa bû?**

Em dûrî Kurdîstanê bûn lê me ji Kurdîstanê xweştir çand û zimanê xwe xwedî dikir. Bona çanda me, li vira û li Rewanê me ji Kurdistanê bêtir kar dikir. Divê vana werîn zanîn, hin kêmasiyên me hebûn lê keda me xweş bû. Eva timam keda bav û kalê me bûn. Meriv Elîşêrê Xwedê be jî meriv bi tenê nikare tiştekî bike. Em kurd milett in, zimanê me heye çanda me heye. Berê nedigotin ka pere em bikin, me dikir. Rojên xweş bûn; wê demê gelek tişt hebûn û dihatin kirin li Ermenîstan û Gurcîstanê ku ew tişt li Kurdistanê jî nebûn. Me ziman xweyî kir, me zimanê xwa pêşve bir. Em lê xwedî derketin, me digo bila zanibin xîreta me heye, sed heyf e ku niha alîkarî tuneye û têkildarî van mijaran pir û pir kêm xebat têne kirin. Divê em kurd êdî piştgiriya hev bikin û li parçeyên din gelek derfet derketinê û divê ew êdî alikariya kurdên Qafqasya'yê bikin. Tu kes êdî piştgiriya me nake, divê em li benda vê jî nemînin. Bo vê ez bang li herçar parçeyan dikim, bila li gorî derfetên ku di destên wan de ne alikariya me bikin.

## Hun hevkariya bi kurdên Gurcîstanê re çawa dibînin?

Niha kurdên Tiblîsê nayên hesibandin. Kes me nas nake. Ku Sovyet hilneweşiya niha hertiştê me hebû. Têkiliya me nebaş e, bila dema ku li Kurdistanê şahiyên çanda kurdî dibe, di festivalan de hin hunermendên ji vir jî beşdar bibin, ma qey nikarin dawet bikin? Yek bila here Wanê, Amedê, Mêrdinê bila dilê wan li welat germ bibe, bila Kurdistana bakur bibînin, em hevdû nas bikin. Bona xweykirina çanda me, milletê me yê li Tiblîse keda wan heye, divê yekî ji Tiblîsê jî dawet bikin. Têkîli li Kurdistanê û li vir çê bibe ma xerab e? Wê kî biparêze li vir çanda kurdî? Par Wezereta Çandê ya Kurdîstanê dema ku me wiha jê re got, gotin: em nikarin alikariyê bikin? Niha em mîna garisekî belav bûne.